ÇAPA EWROPA
# RÛDAW
ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA



*Loke* ji bo konsertan li Qibrisê bû

» 9

Tenê îdiayek? PKK li ser efûkirina kadroyên veqetiyayî kar dike » 4

Boks: Hêlîna 15 salî bû qehremana Almanyayê » 8

Nexweşiyên ku bi rêya sêksê tên guhastin » 15

## Name ji girtîgeha Enqerê

# Hevalên nexweş dimirin!

3 »



Bi hezaran girtiyên kurd ji ber sedemên siyasî di girtîgehên Tirkiyeyê de ne. Di nav wan de bi dehan kesên bi giranî nexweş jî hene. Herçiqasî gellek ji wanên nexweş roj bi roj ber bi mirinê ve dişemitin, lê serlêdanên wan yên ji bo serbestberdanê nayên qebûlkirin. Van rojan nameyek girtiyên kurd yên di girtîgeha Tîpa F ya Sîncana Enqerê de gihişt Rûdawê. Ew behsa rewşa xwe ya "wehşî" dikin.

Hejmar / Nr. 205
04 Tîrmeh / Juli 2013





| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

Norwec: Komûnîstekî kurd "li ser şerefê" jina xwe xeniqand » 6



Parêzgarê Kerkûkê, Dr. Necmedîn Kerîm

Divê Kerkûk jî tevlî referendûmê bibe » 11

# Psîkyatrîstê Kurdê xwedaliqandî dîsa tê dadgehkirin



**Koln (Rûdaw) -** Dadgeha îdarî ya Frankfurtê ev cara sêyemîn e ku ji ber xwekuştina Kurdekî dozê li psîkyatrîstekî niha temenê wî 85 salî vedike.

Kurdekî 30 salî ji ber rapora wî psîkyatrîstî di sala 2007ê de ketibû girtîgeha dersînorkirinê û wî li wir xwe daliqandibû. Psîkyatrîstê ku niha kerr e, heta niha du caran ji ber heman dozê hatibû dadgehkirin.

Dozgerî niha dixwaze cara sêyemîn psîkyatrîstê ku di rapora xwe de diyar kiribû ku pirsgirêk nîne ku ew Kurd di girtîgeha dersînorkirinê de bimîne bide darizandin. Psîkyatrîstê niha 85 salî wê demê ji bo girtîgeha Kasselê dixebitî. Beriya rapora wî, psîkyatriya bajarê Hanau ya nêzîkî Frankfurtê di rapora xwe ya derbarê heman kesê kurd de destnîşan kiribû ku nexweşiya derûnî ya şîzofrenî bi wî Kurdî re heye û metirsiya xwekuştinê pê re ye. Psîkyatrîstê niha dîsa doz lê hatiye vekirin di rapora xwe de diyar kiribû ku metirsiya xwekuştina wî nîne. Lê berovajiyê rapora wî, yê Kurd xwe di girtîgeha dersînorkirinê ya Frankfurtê de daliqandibû.

Ji wê demê ve dadgeha îdarî ya Frankfurtê sedemên xwedaliqandina wî kesî û ihtimala ku rapor şaş hatine amadekirin vedikole. Di Nîsana 2010ê de, piştî ku heman psîkyatrîst ji hêla dadgehê ve bêsûc hatibû dîtin, dozgerî li dijî biryarê derketibû. Li ser vê yekê dadgeha eyaletê jî biryar di cih de dîtibû û diyar kiribû ku psîkyatrîst ne li gor edetê tevgeriyaye lê ne hesanî bû ku were zanîn ku ewê Kurd wê xwe daliqîne. Lê dadgeheke bilindtir diyar kiribû ku di biryara hatî dayin de lêkolîneke berfireh nehatiye kirin û divê doz dîsa were vekirin. Di dozên nû de jî wê pirsa ku rapora şaş ya dozger gelo bûye sedema xwedaliqandina wî kesê kurd were kirin.

Li gor agahiyên rojnameya Frankfurter Rundschau, çewtiya mezin di wir de bû ku yê psîkyatrîst di dema amadekirina raporê de têkilî bi hempîşeyên xwe yên ji meseleyê agahdar nedaniye. Herwiha haya wî ji bikaranîna wî ya madeyên hişbir nebû ku ew jî di rapora yekemîn de hatibû nivîsandin.

Hêjayî gotinê ye ku saziya mafên mirovan a bi navê Pro Asyl heta niha gellek caran daxuyandibû ku raporên psîkologên li eyaleta Hessenê ya Almanyayê yên derbarê penaberan de bi awayekî kambaxî tên amadekirin.

## Di nava mehekê de 3 kes hatin kuştin

# Li Zaxoyê mêrek parçe parçe kirin

**Xerîb Mecîd**
*Zaxo*

Di nava mehekê de li bajarê Zaxoyê li Başûrê Kurdistanê 3 kes hatin kuştin û termê yekî ji wan hat parçe parçe kirin û ew avêtin zibilxaneyekê. Herwiha nameyek jî ji bo birayê yekî ji wan kuştiyan hat şandin.

Şivan Umer Remezan, ku şêniyekî Zaxo ye, dozê li polîs û asayiş dike ku sînorekî ji wan bûyeran re deynin û dibêje: "Ev demeke kuştin li Zaxoyê zêde bûye, vê yekê jî tirs û guman li ba welatiyan dirust kiriye."

Di meha borî de li bajarokê Zaxoyê sê kes hatin kuştin û yekî jî xwe kuşt. Li gor çavkaniyên polîs, yek ji wan tawanên kuştinê bi awayekî hovane hatiye kirin: "Roja 18.06.2013ê termê kesekî hat dîtin ku bi awayekî pirr hovane hatibû kuştin, ser û dest û lingê wî hatibûn jêkirin û ew avêtin nav zibil, lê heta niha nasnameya kuştî û kujeran ne diyar e."

Herwiha roja 24ê meha borî termê ciwanekî 18 salî bi navê Zêbar Nezîr li gundê Asîhê di navbera qezaya Zaxo û Sêmêlê de hat dîtin, heta niha kujerên wî ciwanî nehatine dîtin. Lê kujerên wî nameyek ji birayê yê kuştî re nivîsîne û dibêjin: "Vaye me birayê te kuşt, da ku kesî din çav li wî neke."

Her di meha borî de ciwanekî din bi navê Deham hat kuştin, ew jî heta niha kujerên wî ne diyar in, herwiha ciwanekî jî bi navê Muyed jî xwe kuşt.

Rêveberê polîsên Zaxoyê bi wekalet, Xalid Şefîq, ragihand ku sedema zêdebûna bûyerên kuştinê girêdayî pirsên civakî ye, "wek tolhildanê." Lê çavkaniyeke ewlehiyê li bajarokê Zaxoyê ji Rûdawê re got: "Pirraniya wan kuştinan li ser meseleyên jinan e, hin kes didin dû namûsa xelkê û xelk jî vê yekê qebûl nakin, lewma bûyerên bi vî awayî rû didin."



# Bi seeta xwe ya destan e-mailên xwe bixwînin



**Koln (Rûdaw) -** Seet di jiyana mirovan de yek ji alavên herî giring e. Berê kêm mirov hebûn ku seet bi destê wan ve nebûn, lê di van salên dawî de, piştî ku teknolojî bi pêş ket, êdî elaqeya ji bo seetên destan kêm bû. Ji telefonên destan heta komputer û gellek cûreyên din yên teknolojiyê, di hemuyan de seet hene û ji wê yekê hejmara kesên seetên destan bi kar tînin kêm bûye. Di roja me ya îro de gellek kes ne ji ber pêdiviyê lê bi armanca ciwankariyê seetên destan bikartînin.

Ev valehî ji ber çavên şirketên mezin yên teknolojiyê nereviya û ew di vê dema dawî de ketin nava hewildana afirandina seetên destan yên pirrhêlî. Şirketa bi nav û deng a teknolojiyê Apple ev demek e ku bi afirandina seeta xwe ya pirrhêlî ya bi navê iwatch ve mijûl e. Hêj Applê ev berhema xwe ya nû derneaniye, şirketa Sony ji nişkan ve sûrprîzek li seethezan kir û seeta destan a bi navê Smartwatch deranî. Cama seetê touchscreen e. Mirov dikare wekî telefonên destan yên pirrhêlî bi danîna tiliyê ya li ser cama wê guhertinên pêwist bike. Taybetmendiyên seeta Sony ji yên telefonên destan ne dûr in. Mirov dikare civanên xwe tê de tomar bike, li mûzîkê guhdarî bike û e-mailên xwe bixwîne. Ji bo ev yek pêk were jî, tenê şertek heye; Divê girêdanek di navbera telefona we ya destan a bi pergala androîd û seeta we re hebe.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Marketîng û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# Zindaniyên Enqerê name û belge ji Rûdawê re şandin



## "Hevalên me yên nexweş cangorî dibin"

**Köln (Rûdaw) -** Li girtîgehên Tirkiye û Bakurê Kurdistanê derdore 230 girtiyên nexweş ên rewşa wan a tenduristiyê nebaş hene. Piştî ku pêvajoya hevdîtinên aştiyê di navbera rêberê PKKê Abdullah Ocalan û dewleta Tirkiyeyê de destpêkiribûn, gellek derdoran bang kiribûn ku wek gava yekemîn girtiyên nexweş serbest werin berdan. Di vê bareyê de heta niha gav nehatine avêtin û gellek nexweş bi metirsiya windakirina jiyana xwe re rû bi rû mane. Van rojan nameyeke balkişandina ser rewşê ji zindaniyekî kurd yê ji girtîgeha Enqerê gihişt navenda Rûdawê.

Ji girtîgeha Tîpa F ya Sîncana Enqerê Mehmet Can Oguzsoy bi nameyekê û belgeyên ku ji Rûdawê re rêkirine bang li raya giştî dike ku derbarê babetê de hestiyar bin. Oguzsoy dema ku serokê baskê ciwanan yê HADEPa Kagithaneya Stembolê bû, salek û nîvê di girtîgehê de mabû. Piştî serbest hatibû berdan, di dema êrişeke li ser wesayîta propagandayê ya HADEPê de birîndar bîbû û dûre hatibû Ewropayê. Ji Ewropayê jî di sala 2006ê de vegeriyabû welêt û tevlî gerîllayên PKKê bibû. Di sala 2009ê de li Samsûna Tirkiyeyê di şerekî di navbera artêşa tirk û gerîllayan de birîndar dibe. Ji ber damara wî ya xwînê ya mezin ziyan dîtibû, wî gellek xwîn winda kiribû. Roja piştî birîndarbûnê ew bi awayekî jihişçûyî dîl hatibû girtin.

### Îrfan Eskîbag di heman girtîgehê de jiyana xwe ji dest da

Mehmet Can Oguzsoy, bi navê xwe yê kod Hejar Gûtî Amed, ku ji girtîgeha Sîncanê name ji Rûdawê re rêkiriye, dixwaze bala raya giştî bikişîne ser girtiyên nexweş. Oguzsoy di nameyê de herwiha bîranînek xwe ya ligel Îrfan Eskîbagê ku di meha Gulanê de ji ber nexweşiya xwe di heman girtîgehê de jiyana xwe ji dest dabû parvekiriye: "Ez gellek caran birîndar bûme, gellek hevalên min jî li tenişta min şehîd ketine. Ev tişt hatine jiyandin û ez jî bûme şahidê van yekan. Mirina hevalên me yên li zindanan wehşeteke din e. Beriya sê mehan, dema heval Îrfan Eskibag jî hatibû hewşa girtîgehê, min xwest merhebayê bidimê lê gardiyan xwest astengiyan derîne. Min ji gardiyan re got ´ev hevalê me wê sê mehên din cangorî bibe, nezanînê neke û pirsgirêkan dernexe`. Çûm û min destê xwe da heval Îrfan Eskibag. Êdî di wê demê de kîjan hest min jiyandin, encax kesekî ku bizane ku hevalê wî/wê piştî sê mehan jiyana xwe ji dest bide, dikare wê hestê bijî."

### Bi rêya Rûdawê ji bo hestiyariyê bang li raya giştî kir

Mehmet Can Oguzsoy diyar dike ku wan gellek caran bi rêya nameyan serî li wezareta dadê, wezareta tenduristiyê û serokkomar dane û daxwaz kirine ku Îrfan Eskibag rojên xwe yên dawiyê di nav malbata xwe de derbas bike lê ev yek nehatiye pêkanîn. Wekî gellek girtiyên din wî jî jiyana xwe di girtîgehê de ji dest daye. Ji bo ku girtiyên din ên nexweş bi heman karesatê re rû bi rû nemînin, Mehmet Can Oguzsoy bi rêya Rûdawê bang dike ku raya giştî derbarê girtiyên din de hestiyar be.

### Serlêdanên ji bo serbestberdanê û bersivên dozgeriyê

Mehmet Can Oguzsoy li girtîgeha Sîncanê ligel Recep Bekik ji bo serbestberdana çend girtiyên din ên rewşa wan a tenduristiyê di metirsiyê de ye serî li wezareta dadê û dozgeriya komarê ya Enqerê daye. Di belgeyên ku Mehmet Can Oguzsoy ji Rûdawê re rêkirine de, li ser serîlêdanên wî û Recep Bekik, dozger Abbas Ozden li ser navê serdozgeriya komarê ya Enqerê ev bersivên jêrê dane girtiyan:

**Abdusammet Çelik** *bi nexweşiya Myelodisplastik Senrom a demdirêjî ketiye û li gor rapora tenduristiyê pêwiste Çelîk bi tena serê xwe nemîne û di girtîgehêke de bê bicihkirin ku tê de odeyek çavdêriya bijîşkî (revir) hebe.*

**Cengiz Eker** *yê bi nexweşiya kroner arter daxwaza efûyê nekiriye û di rapora wî de tê pêşniyarkirin ku di girtîgeheke bi çavdêriya bijîşkî (revir) de bê bicihkirin.*

**Hasan Alkiş,** *ji bo were zanîn ka nexweşiya demdirêjî û seqetî pê re heye û rapor were nivîsandin, sewqî nexweşxaneya Numune ya Perwerdeyê û Lêkolînê ya Enqerê hatiye kirin.*

**Burhan Kaya** *yê ku bi nexweşiya obstruktif a kezebê ya kronîk ketiye, sedem nehatiye dîtin ku wî rêkin girtîgeheke li bajarek din. Tedawiya wî dewam dike.*

**Mansur Tekin** *yê di Adarê de ji ber enfeksiyona transfonoid hatibû emeliyatkirin, li gor rapora tenduristiyê dikare jiyana xwe beyî alîkariyê berdewam bike û tedawiya wî berdewam e.*



Wêne: Rûdaw

## Dibêje venagerim nav PKKê

# Osman Ocalan doza diyalogê li PKKê dike

Ferman Çomanî – Ranya

Osman Ocalan yek ji serkirdeyên berê yên PKKê û birayê rêberê PKKê Abdullah Ocalan e. Osman Ocalan ragihand ku ew dixwaze dest bi xebateke hevbeş ligel PKKê bike, lê PKK pêngavan navêje.

Piştî sala 2004ê çend serkirdeyên diyar ên PKKê ji partiya xwe cihê bûn, wek Osman Ocalan, Nîzamedîn Taş (Botan), Xelîl Atac (Ebû Bekir) ku endamên Konseya Serokayetiya PKKê bûn, herwiha Xidir Sarîkaya (Ekrem), Serhed, Kanî Yilmaz û Dursun Alî Kuçûk û çend endamên din ên berpirs.

Li gor hin zanyariyan, PKKê efû ji kesên ku jê cihê bûne derxistiye. Osman Ocalan her çiqasî got ku haya wî ji vê agahiyê tine, lê got: "Ez amade me ku xebateke hevbeş ligel PKKê bikim." Berpirsê pêwendiyên derve yê PKKê Ehmed Denîz jî bi rêya telephone îdiaya derxistina efûyê red kir û ji Rûdawê re got: "Tiştekî wiha li holê tine."

Osman Ocalan di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de got: "Pirr caran min hewl daye ku ji bo pêşxistina pêvajoya aştiyê li Tirkiyeyê ligel PKKê diyalogê bikim, lê wan pêngav neavêtine, niha ku proseya aştiyê li Tirkiyeyê di rojevê de ye, PKK hewcedarî aştiya navxweyî ye. Gellek kes ji PKK cihê bûne, eger PKKdi hundirê xwe de guhertinan bike, bawer im ji bo yekîtiya neteweyî pirr giring e."

Derbarê vegera wî bo nav PKKê jî, eger ew efû rast be, Osman Ocalan got: "Ez ji ber cudahiya bîr û baweriyan ji PKKê cihê bûm, di dema xwe de min dixwest bi rêya aştiyê pirsa kurd bê çareserkirin. Wan digot bi çekdarî. Niha jî ku bîr û baweriya wan guheriye û rêya siyasî hilbijartine, ev xaleke giring e û dixwazim xebata hevbeş ligel PKKê bikim, lê nabim endamê PKKê û pêwist jî nabînim bibim PKKyî."

Birayê serokê PKKê herwiha got jî: "Ewên wek min cihê bûne hejmara wan bi hezaran e û her yek ji wan karekî dike, hin li Herêma Kurdistanê ne û hin li Tirkiyeyê û Ewropayê ne û karên bazirganî yan medyayê dikin." Osman Ocalan pêwist dibîne ku PKK doza lêborînê ji wan kesên ku cihê bûne bike: "Ji ber ku PKKê ew weke xayîn binavkirine. Ez bi xwe cihê bûme, min tiştek li hember PKKê nekiriye, çima divê min wek xayîn binavbikin? Pêdiviya min pê tine, ne Tirkiye û ne jî PKK efûya giştî ji min re derbixin, da ku herim ba wan. Lê dixwazim karê hevbeş ligel PKKê bikim."

Ehmed Denîz derbarê derxistina lêborînê ji bo kadroyên xeyidî yên PKKê di siberojê de jî got: "Pêwist e ji bo vê yekê civîneke mezin bê sazkirin, lê heta niha tiştekî wiha tine."



Rence Cemal
*Hewlêr*

## Endamekî Kombenda Zanyarî ya Serbistanê:



# Kurd û Serb yek kok in

Endamekî Kombenda Zanyarî ya Serbistanê ku ev demeke mijûlî lêkolînê ye li ser gelên Balkan û nemaze Serban, dibêje Kurd û Serb ji yek kokê ne.

Rizgar Mihemed Rencero, ku Kurdekî niştecihê Serbistanê ye û endamê kombenda zanyarî ya wî welatî ye, niha ji xeynî ku mijûlî xelaskirina xwendina xwe ya doktorayê ye di warê ragihandinê de, ev çend sal in di aliyê zimanî û dîrokî de mijûlî lêkolînê ye ji bo selmandina wê yekê ku gelên Balkanê bi giştî û gelê Serbistanê bi taybetî ligel Kurdan xwediyê yek kokê ye.

Rizgar Mihemed Rencero ji Rûdawê re got: "Çend sal in li Serbistanê dijîm û ziman û dîroka wî welatî bala min pirr kişandin. Min karibû teqez bikim ku gelên Balkanê, ku navê wê nêzîkî Balekanê ye, û gelê serb bi taybetî koka wan ji neteweya kurd e. Beriya hezarên salan Kurdan koç kirine wî welatî û ew şên kirin."

Rizgar Mihemed dibêje lêkolîna wî bala çend zanyarên serb jî kişand: "Bi taybetî li kombenda zanyarî ya serbî gotûbêj bi min re kirin û bawer kirin ku koka wan ji Kurdan e."

Serbistan, Montenegro, Bosna-Hersek, Kroatya, Maqedonya û Slovenya, ku dikevin başûr-rojhilatê Ewropayê, ji van welatan re tê gotin welatên Balkanê. Bi dehan peyv li wan welatan bi giştî û li Serbistanê bi taybetî dişibin peyvên kurdî. Rizgar Rencero got: "Li Serbistanê bajarên mezin bi navên Rajan, Surçîn, Pîrot û Bêşke hene. Herwiha gundekî wan heye bi navê Bagirdan, ku robarek tê de diçe bi navê Morava yanî ava mor. Herwiha ji kaniyê re dibêjin kanî, ji dole re dibêjin dol û ji robar re dibêjin rêka ku peyveke xurû kurdî ye, ango ew rê xweş dike ji bo çûne."

### Lihevçûna navên serbî û kurdî

Rizgar Rencero herwiha got: "Di zimanê serbî de ji mirinê re dibêjin mirtev, ji jiyanê re jî dibêjin jîvot. Bi dehan peyvên din hene ku ser bi peyvên kurdî diçin. Yan zayenda wan vedigere peyvên kurdî, wek mînak li Serbistanê ji jinê re dibêjin jîvot, ji bira re dibêjin birat, ji bizmar re dibêjin yekser, ji çakûç re dibêjin çakîç. Ew jî belgeyên eşkere ne ku koka wan ji neteweya kurd e."

### Ji her 4 Serbiyan navê yekî Goran e

Hejmarek ji wan ajelên ku li Kurdistanê jî hene li Serbistanê jî hene û bi heman navî tên bangkirin. Rizgar Rencero çend mînakan tîne û dibêje: "Li Serbistanê ji jîjo re dibêjin yejek, ji mişk re dibêjin mişk, ji beraz re dibêjin peraz."

Rencero wiha pê de çû: "Ji her 4 Serbiyan navê yekî Goran yan Zorkî ye yan Zîlan e. Niha li Serbistanê êleke mezin ku dora 200 kesî ye, navê wê Goran e. Li Kurdistanê jî eşîra Goran heye."

Ji xeynî belgeyên zimanî, Rizgar di lêkolîna xwe de pişta xwe bi çend belgeyên dîrokî jî girêdide û dibêje: "Eger em jiyana Şah Konstantîn lêkolîn bikin, ku bajarê Qustentîne dirust kiriye û niha jê re Stembol tê gotin, emê bibînin ku Kurd li wan navçeyan jiyane. Ji ber ku Şah Konstantîn gotiye ez şanaziyê dikim ku ji êla Gutiyan im ji paşmaya Madan. Niha jî li bajarê Nişîn li Serbistanê ku yek ji paytextên Şah Konstantîn bû, qesr û meydanên mezin mane bi navê Mîdyana. Mîdya ku taybet e bi Madan û Ana xwedaya Madan bû."

## Serokê Enstîtuya Kurdî li Tehranê, Baram Weledbegî:

# Dem hatiye ku partiyeke Kurdan a yasayî li Îranê hebe

**Hewlêr (Rûdaw) –** Serokê Enstîtuya Kurdî li Tehranê ecêbmayîna xwe ji gotinên serokkomarê nû yê Îranê Hesen Rûhanî nîşan da, gava got: "Civakeke me ya pirrnetew tine." Weledbegî got: "Rûhanî nikare neteweyên ne Faris nedîtî bike."

Kurd bi awayekî berçav tevî hilbijartina vê carê ya Îranê bûn û dora ji sedî 70ê ji Kurdan dengên xwe dan berbijarê reformxwazan Hesen Rûhanî. Gava Rûhanî serdana bajarên Rojhilatê Kurdistanê kir, got ew di kabîneya xwe de neteweyên Îranê piştguh nake. Lê beriya çend rojan wî di daxuyaniyekê de neteweyên ne Faris ên Îranê wek "çandeke hûr" binavkir.

Melayê înê yê bajarê Zahîdan, Mewlewî Ebdilhemîd, ku kesayetiyeke sunî ye, piştî dîtina Rûhanî ragihand ku zêdeyî pêşbîniya me Rûhanî giringiyê dide kêmîneyan.

Serokkomarê Îranê mijûlî pêkanîna kabîneya xwe ye, li gor wan sozên ku beriya hilbijartinan dabû neteweyên kêmhejmar, amaje bi wê yekê tê kirin ku cîgirek û du wezîr ji kêmhejmarên Îranê bin.

Celal Celalîzade, ku nûnerê berê yê bajarê Mehabadê li parlementoya Îranê ye û niha jî wek kesayetiyeke kurd a nêzîkî Rûhanî tê hejmartin, ji Rûdawê re got: "Rûhanî ji bo cîbicîkirina destûra bingehîn a Îranê, herwiha nehiştina cudakariyê, soza postên hikûmî ji bo Kurdan daye, lê amaje nedaye posteke taybet."

Lê Hesen Rûhanî roja şemiya borî li navenda deng û reng a Îranê (Seda û Sîmaya Îran) daxuyand: "Civakeke me ya pirrnetew tine, lê yek dewleta Îranê û yek neteweya me ya Îranî heye ku hemû xwe di Îslamê de dibînin." Li gor hin çavdêran, ev nîşaneke ji bo dûrketine Hesen Rûhanê ji wan sozên ku dabûn neteweyên ne Faris ên Îranê.

Serokê Enstîtuya Kurdî li Tehranê, Baram Weledbegî, ku mêvanê bernameya Rûdawa Îro ya televizyona Rûdawê bû, ecêbmayîna xwe ji wan gotinên Rûhanê nîşan da û got: "Rûhanî yek ji melayên xwende yên Îranê ye, ku berpirsê yekem yê navenda lêkolînên stratejîk li Îranê bû, li wê navendê beşek bi navê neteweyan heye."


Wêne: Rûdaw
Baram Weledbegî

**Di serdema Nejad de me ti karekî çandî nekir, xerabtirîn dewrana çanda kurdî bû di 30 salên borî de, hemû rojname û kovarên kurdî hatin girtin."**

Li Îranê ji bilî Farisan, ku dora ji sedî 55ê welatiyên Îranê pêk tînin, Kurd, Azerî, Tirk, Ereb û Belûç hene. Baram Weledbegî got: "Rûhanî nikare wan neteweyan tine bike, nizanim çawa ew gotin kiriye." Bi baweriya Baram Weledbegî, hêj zû ye ku biryar li ser helwesta Rûhanî li hember neteweyên Îranê bê dayîn û got: "Divê em li benda pêkanîna kabîneya wî bimînin, ji ber ku wezîr û alîkarên wî nûnertiya Rûhanî dikin."

Rûhanî beriya hilbijartinan gellek soz dan Kurdan û li bajarê Sine behsa "aştiya millî" kir. Li gor Weledbegî, ev gotina Rûhanî divê kar li ser bê kirin û bibe bingehek ji bo çareserkirina pirsa kurd li Îranê.

### Xerabtirîn serdema çandî li Îranê

Baram Weledbegî di serdema serokên berê yên Îranê Mihemed Xatemî û Mehmûd Ehmedînejad û niha jî Rûhanî de karê çandî li Tehranê dike. Bi baweriya wî, serdema Nejad xerabtirîn serdem bû ji bo karê rewşenbîrî li Îranê û got: "Di serdema Nejad de me ti karekî çandî nekir, xerabtirîn dewrana çanda kurdî bû di 30 salên borî de, hemû rojname û kovarên kurdî hatin girtin." Lê Weledbegî bi serdema Rûhanî geşbîn e.

Di civîn û panelên vê dawiyê yên Kurdên Rojhilatê Kurdistanê de pirr behsa dubarebûna ezmûna Bakurê Kurdistanê tê kirin. Lê Baram Weledbegî got: "Divê em rastbîn bin. Nasnameya Îranê heye, divê em jî platform, bername û stratejiya me ji bo çareseriya pirsa kurd hebe."

### Dema damezrandina partiyeke kurdî hatiye

Her çiqasî hejmara Kurdan li Îranê wek 10-12 milyon tê hesibandin, lê ti partiyeke kurdî di nava Îranê de tine, tenê çend komeleyên çandî hene. Her çiqasî di serdema Xatemî de vebûnek hebû ji bo dirustkirina partiyê, lê Kurdan ti sûd ji wê vebûnê nedîtin.

Bi dîtina Baram Weledbegî, pêkhateya klasîkî ya Îranê rêya damezrandina partiyan berteng kiriye: "Lê ev nayê wateya ku partiyên Kurdan nebin, dema wê yekê hatiye ku li Îranê kurd li ser wê pirsê bifikirin."

## Yekîtiya Mamostayên Kurd biryara rejîma Sûriyê vala derxist


Wêne: Rûdaw

**Kobanê (Rûdaw) -** Yekîtiya Mamostayên Kurd li Rojavayê Kurdistanê ezmûnên bekeloriya ji bo xwendekaran li bajarê Kobanê lidardixe.

Yekîtiya Mamostayên Kurd li Rojavayê Kurdistanê ezmûnên xwendekaran ên ji aliyê rejîma Sûriyê ve, bi hêceta ku li deverên Kurdan hêzên ewlehiyê nîne dabûn sekinandin, veguhestin bajarê Kobanê.

Wezareta perwerdeya Sûriyê biryar dabû ezmûn û îmtihan li bajarê Helebê bên lidarxistin lê Yekîtiya Mamostayên kurd ev biryar vala derxist.


**Ehmed Lewend**

### Jiyana Kurdên Rojava

Piştî derbasbûna sê salan bi ser şoreşa sûrî de, milet ketiye rewşeke zor xerab û heta îro ne Artêşa Azad û ne jî rejîma sûrî kariye yê din tine bike. Lê delîv ketiye destê Kurdan ku mala xwe raxînin û hin qezencan bi dest xwe bixin, lê heta vê gavê jî milet ji karê ku tê kirin ne razî ye, ji çi layanî ve be. Herwiha tirs ji aliyê milet ve heye ku rewş tarî ye û ne zelal e.

Nearamî li herêma Kurdên Rojava roj bi roj zêdetir dibe û rewş nexweş dibe û aloziyên jiyanê zêdetir û zehmet dibin. Gellek sedem hene ji bo wan astengiyan, rewşa milet ya rojane di aliyê kar û xebata rojane de nemaye, ji ber ku cihê wan kesên ku çûne Kurdistan Başûr bi wan kesên ji herêmên Erebên Dêrazorê reviyayî û ji wan herêmên din hatiye dagirtin.

Di aliyê xwendinê de jî dibistan bûne cihê penaberan û di aliyê çûn û hatinê de gellek metirsîn hene û di aliyê awlekariyê de jiyan bi zorî derbas dibe û di aliyê diravî de pere nînin û xwarin gellekî giran û buha ye. Di aliyê tenduristiyê de jî nojdar nemane, hemû derketine derveyî welêt û pereyên dermanan nînin, herwiha şîrê zarokan nîne. Elektrîk tê birrîn û mirov dikare bêje ku nîne û pê re av jî tê birrîn. Gaz wek demên berê nîne, xwarin li ser tifikê tê pijandin, eger ku xwarin hebê û nan gellekî kêm e û gellekî biha bûye û gellek nexweşî peyda dibin.

Bi derketina kêzik, pêşî û tûpişkan miletê kurd ketiya navbera kesên tundrew û Artêşa Azad û nanxwurên rejîmê û hêzên ku dibêjin em Yekîneyên Parastina Gel û Asayîşa Kurdan in û her yek ji wan serê werîs bi ser xwe de dikişîne. Û bi ser van hemû tiştan de jî Kurd ne yek in û tar û mar in.

## Li Norwecê

# “Li ser şerefê” hevjîna xwe xeniqand

**Hewlêr (Rûdaw) -** Di nava 20 rojan de li Norwecê 3 jin ji aliyê mirovên xwe ve hatin kuştin, piştî kuştina jineke pakistanî û jineke afganî, Helale Xizir a ji bajarokê Serdeşt ê Rojhilatê Kurdistanê jî ji aliyê mêrê xwe ve, ku komûnîstekî penaber e li wî welatî, hat kuştin.

Helale li bajarokê Lorinskug li nêzîkî bajarê Osloyê dijiya. Ev dora 10 salan bû ku bi hevjînê xwe re zewicî bû û zarokan wan jî hene. Helale roja 17.06.2013ê ji aliyê zilamê xwe ve hat xeniqandin, dûre jî zilamê wê ji aliyê polîsan ve hat girtin.

Ji xeynî zêdebûna kuştinên li ser namûsê li Kurdistanê, kuştina jinên kurd li welatên Ewropayê jî gellek caran dibe manşêta rojnameyan, ev jî nîşaneke wê yekê ye ku gellek Kurdên niştecihên Ewropayê jî hêj dest ji kultûr û perwerdeya xwe ya berê bernedane.

Kuştina Helale Xizir tawaneke din a kuştina li ser namûsê tîne bîra mirov ku beriya 11 salan qewimîbû û hêj dengvedana wê berdewam e, kuştina Fadîme Şahîndal li Swêdê di sala 2002yê de. Ew bûyer bû hevêna romaneke Eta Nehayî di sala 2008ê de jî, bi navê “Girewa Bextê Helale”. Nehayî di vê romanê de behsa keçekê dike ku li ser doza bavê xwe yê pêşmerge diçe Ewropayê û ji bo welatê xwe mêrekî kurd dike hevjînê xwe, da ku bikare wê bigihîne Swêdê, lê belê dûre ew mêr bi xwe Helale li ser namûsê dikuje.

Helaleya Norwecê jî heman qehremana sereke ya romana Nehayî tîne bîra mirov. Jiyana Helale Xizir jî li gundê Sîsîrê yê navçeya Serdeşt a Rojhilatê Kurdistanê destpêdike. Helale keça Memend Axayê Neftan e ku ji malbata Xizir in û mêrê wê jî xizmê wê ye. Helaleya 35 salî 12 salan ji hevjînê xwe biçûktir bû. Rojnamevanê ji Rojhilatê Kurdistanê, Sabir Qadirî, ku niha li Norwecê dijî, serpêhatiya Helale ji Rûdawê re vegot: “Mêrê Helale endamê Partiya Komûnîst a Îranê ye. Ji ber sedemên siyasî ew hatiye Ewropayê û ji mêj ve li Ewropayê ye. Ew dixwaze xizmeke xwe bîne, lewma daxwaza Helale dike, digel ku berê hev nedîtibûn.” Sabir Qadirî got: “Dibêjin ew mêr li Ewropayê ye û pereyên wî hene, lewma xizmên Helale ew danê. Helale jî razî bû ku pê re bizewice.”


Helale Xizir

### Hevjînê wê telefonî polîsan kir

Di 2003yê de Helale berêxwe dide Norwecê û bi wî kesî re dizewice, du zarokên wan jî çêdibin. Qadirî diyar dike ku ji pêşî ve û heya roja xeniqandina wê kêşeyên Helale û hevjînê wê hebûn: “Ew jin ji mêrê xwe ciwantir bû û di warê fîzîkî de jî saxlemtir bû, zilam bi 12 salan jê mezintir bû, hezkirineke berçav ji pêşî de di navbera wan de nebû. Ji ber van hokaran dilê zilam li hember jinê xerab dibe, heta di dawî de wê dixeniqîne.” Li gor Sabir Qadirî, şeva bûyerê mêrik telefona polîsên Norwecê kiriye û gotiye: “Jina min xeniqiye, lê polîs wî ji bo lêkolînê digirin û dûre li tawana xwe mikur tê.”

Di nava 20 rojan de li Norwecê 3 jin hatine kuştin. Ji xeynî Helale, du jinên pakistanî û afganî jî hatin kuştin. Van bûyeran di medyaya Norwecê de deng veda. Qadirî got: “Medyaya Norwecê wek keseke îranî berê xwe dan kuştina Helale, ne wek keseke kurd. Li Norwecê eger kesekî biyanî tawanekê bike, ew vê yekê pirr mezin dikin û wiha li mirov dikin ku ji xwe şerm bike ku kesekî ser bi neteweya wî ew tawan kiriye.”

Par jî her li Norwecê Kurdekî xelkê Başûrê Kurdistanê hevjîna xwe ya norwecî kuştibû û piştre hatibû girtin. Beriya wê bi demekê jî her li Norwecê çalakvaneke kurd li mala xwe li bajarê Bergun şewitî hatibû dîtin û heta niha sedemên şewata wê ne diyar in.

Herdu zarokên Helale niha li dezgeha parastina zarokan tên xwedîkirin. Pismamekî Helale li Norwecê ye û birayekî hevjînê wê jî li wir e, lê herdu jî ne amade bûn ku di vî warî de tiştekî bêjin.

## Gundekî Kurdistanê di pêşangeheke almanî de

# "Zelxider- cîranên me yên Kurd"

**Koln (Rûdaw) -** Li bajarên Meckenheim û Rheinbachê yên eyaleta Nordrhein-Westfalen zêdeyî 300 malbatên kurd yên bi eslê xwe ji gundê Zelxider yê ser bi Depa ser bi Elezîzê dijîn. Zelxider gundekî Kurdên elewî ye. Ji bo ku Almanên ji bajarên Meckenheim û Rheinbachê ji nêzîk ve cîranên xwe yên Kurd nas bikin, li navenda çandê ya Meckenheim "Mosaik - Kulturhaus Meckenheim" pêşengehek hat vekirin. Bi rêya vê pêşangehê Almanên ku meraqa jiyana cîranên xwe yên kurd dikin, dikarin wan ji nêzîk ve nas bikin. Di pêşangehê de wêneyên Zelxider, yên gundiyên wê, li wir çawa dijiyan û çawa hatine Almanyayê dikarin werin dîtin.

Xwediyê fikra pêşengehê Alican Tayfur ji heman gundê Bakurê Kurdistanê ye. Derbarê bicihanîna vê fikra xwe de, Tayfur ji rojnameya General Anzeiger re diyar kir ku ew hêvîdar e ku bi rêya vê pêşangehê di warê hevfêmkirina gelan de sûd were wergirtin. Alican Tayfur di sala 1989ê de wek penaber hatiye Almanyayê û digel ajokariya otobûsê, ew wek endamekî partiya CDU ya li herêmê jî çalak e.

Ji bo pêşengehê hem eleqeya Almanan zêde ye û hem jî polên dibistanan jî diyar kirine ku ewê serdanê wê bikin. Şaredarê Rheinbachê Stefan Raetz jî, ku beşdarî pêşengehê bû, diyar kir ku di rojên zehmet de wan deriyê xwe ji Kurdan re vekiriye û Kurdên li wir niştecih bûne jî ji wan re dilê xwe vekirine.

Yek ji wan kesên ku alîkariya vekirina vê pêşengehê kiriye Anette Bothien e. Wê gellek Kurdên ji Zelxider bi rêya kursên zimanê almanî yên wê didan nas kirine. Wê herwiha par serdana vî gundê Kurdên elewî jî kiribû. Bothien gellek xizmên kesên ku wê li bajarê xwe nas kiribûn li gund dîtibûn. Derbarê pêşangehê de jî Bothien diyar kir ku pêwist e taybetmendiyên endamên civakê werin naskirin. Pirraniya wêneyên ku di pêşangehê de tên nîşandan di dema serdana wê ya ligel hevjînê wê û Alican Tayfur ya Zelxider de hatibûn kişandin.


Di dema vekirina pêşangehê de: Alican Taylur ligel şaredaran Bert Spilles û Stefan Raetz li Meckenheimê

Wêne: Rûdaw

Bi pêşangehê bîranînên gundiyên Zilxider jî ji nû ve zindî dibin. Mehmet Eryilmazê ku di sala 1989ê de hatiye Almanyayê ji heman rojnameyê re diyar kiriye ku ew hê jî bêriya gundê xwe dike û her şev di xewnên xwe de li gundê xwe ye. Mahmut Akter jî kesekî din e ku bîranîna çîroka zewaca xwe parve kiriye. Akter di sala 1963yê de dil dikeve keçek ji gund û wê direvîne. Piştî malbata hevjîna wî zewaca wan bi şertê qelendê dipejirîne, ew mecbûr dimîne ku li ber wî şertê malbatê berê xwe bide Almanyayê.

Pêşangeha "Zelxider- cîranên me yên Kurd" wê heta 18ê Tîrmehê ji serdanan re vekirî be. Heman pêşengeh wê di navbera 8 û 31ê Cotmehê de dîsa li avahiya şaredariya Rheinbachê were nîşandan.



Wêne: Rûdaw

## Li Berlînê

# Kurdên Rojava meclisa xwe avakirin

**Berlîn (Rûdaw) -** Li Almanyayê nûnertiya Meclisa Gel a Rojavayê Kurdistanê (MGRK) ya Berlîn-Brandenbûrgê hat damezrandin. Di civîna damezrandinê ya di 26.06.2013ê de Dr. Gundî Dilberz û Şahrîban Bak wek hevserokên meclisê hatin hilbijartin. Ji bilî dîwana serokatiyê ya ji 7 kesan, 4 komên xebatê jî hatin hilbijartin.

MGRK ku wek rêxistina sîwan ya Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) li Rojavayê Kurdistanê tê zanîn, di nava Desteya Bilind a Kurdî li Rojavayê Kurdistanê (DBK) de xwedî 5 endaman e. Her pênc endamên din yên DBKê ji 16 partiyên di nava Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) pêk tên. Li Berlînê ev demek dirêj e ku nûnertiya ENKSê heye. Bi vî awayî nûnertiya herdu meclisên gel ên li Rojavayê Kurdistanê li Berlînê çêbûn.

Nûnerê koma ragihandin û dîplomasiyê yê MGRKa Berlînê, Şerwan Abdulmajid, ji Rûdawê re diyar kir ku nûnertiya yekem wan niha li Berlînê damezrandiye. Di dema pêş de ewê hem nûnertiyên eyaletên Almanyayê û hem jî nûnertiya giştî ya Almanyayê damezrînin.

### Hewla avakirina nûnertiya DBKê

Şerwan Abdulmajid herwiha destnîşan kir ku armanca wan a sereke ew e ku ew bikaribin bi ENKSê re nûnertiya DBKê ya Almanyayê damezrînin û wiha axivî: "Em dixwazin bi yek dengî li Almanyayê karên dîplomasiyê û karên din ên derbarê Rojavayê Kurdistanê de bikin. Bihevrelidarxistina Newrozê û tiştên din ên netewî jî armanca me ye."

Derbarê pirsa ka gelo hevdîtinên wan ên bi ENKSa Berlînê re niha di çi astê de ne, Şerwan Abdulmajid diyar kir ku heta niha çend hevdîtin pêk hatine û di demeke nêzîk de jî bi vê armancê ewê dîsa li hev bicivin: "Me herdu aliyan vekirina nûneratiya DBKê erê kiriye. Lê aliyê ENKSê li benda erêkirina ji welêt e. Di nava ENKSê de 16 partî hene û pirsgirêkên wan hene. Em dixwazin ENKS pirsgirêkên xwe yên li welêt safî bike û derfetê bide nûnertiya xwe ya li vir, ji bo em bikaribin bi hev re kar bikin."

Nûnerê MGRKê Şerwan Abdulmajid herwiha got ku eger di warê damezrandina nûneratiya DBKê ya Almanyayê de erêkirin ji ENKSa li welêt neyê jî, gellek xebatên ku ew dikarin beyî hebûna sîwana DBKê jî bi nûnertiya ENKSê re bikin hene.

### ENKS li benda biryara DBKê ye

Ji hêla din ve berdevkê ragihandinê yê ENKSê li Berlînê Meksîm Îsa jî Rûdawê re diyar kir ku ew wek nûneriya ENKSê nikarin beyî erêkirina Desteya Bilind a Kurdî li Rojavayê Kurdistanê nûnertiya li Almanyayê vekin. Îsa diyar kir ku di vê bareyê de ew bi DBKê re axivîne lê belê ji wan re hatiye gotin ku heta niha civîn çênebûne ku ew li ser biaxivin. Meksîm Îsa wiha dewam kir: "Ku DBK li welêt bi ser nekeve, em nikarin li Ewropayê biryareke li ser ya wan re bistînin. Kengî wan biryar da, emê nûnertiyê vekin. Lê digel vê jî ev nayê wê wateyê ku em têkiliyên xwe bi EGRKê re qut bikin."

Li ser pirsgirêkên navxweyî yên di nava DBKê de jî, Meksîm Îsa anî zimên ku ji ber buyerên van rojan li Amûdê rûdane sarbûnek çêbûye û xwevekişandina hinek aliyan ya ji DBKê jî hatiye gûfûgokirin. Herwiha derbarê bûyerên li Amûdê jî Îsa got ku ew dixwazin EGRKa Berlînê jî di wî warî de helwestê nîşan bide.

Berdevkê ragihandinê yê ENKSê li Berlînê Meksîm Îsa herwiha anî zimên ku heta ji aliyan were divê formekî ku hemû alî bikaribin bi hev re kar bikin bibînin û divê naveroka Peymana Hewlêrê jî were tijekirin.

Li ser xebatên hevpar yên li Berlînê jî, Meksîm Îsa bi bîr xist ku beriya niha jî wan wek ENKSê bi hevalbendên PYDê re çalakiyek li ber Brandenburger Tor lidarxistine û derbarê karên hevbeş yên siberojê de jî ewê di demeke kurt de bi birêveberên EGRKa Berlînê re civînekê lidarbixin.

# Şahan û Asmîn jî êdî alman in

**Köln (Rûdaw) -** Li Almanyayê salane bi dehhezaran biyanî dibin hemwelatiyên vî welatî. Di nava van biyaniyan de bi hezaran Kurd jî hene.

Herdu xuşk û birayên kurd Şahan (13) û Asmîn Ozdemir (11) jî êdî hemwelatiyên Almanyayê ne. Herdu ligel malbata xwe li bajarê Saarbruckenê dijîn. Dayika Şahan û Asmîn ji Cizîra Botan e û bavê wan ji Hezexê ye. Dêbavên wan beriya 15 salan wekî penaber hatibûn Almanyayê. Ew jî wekî herdu xuşk û birayên xwe yên din li Almanyayê hatin dinê. Malbatê berê pasaporteke tirkî standibû û ev yek dibû sedem ku ew ji hinek mafên hemwelatiyên Almanyayê bêpar bin. Heta niha, dema wan bi malbatî dixwest derkevin derveyî Almanyayê, carcaran bi pirsgirêka vîzeyê re rû bi rû diman, lê bi vî awayî ji vê pirsgirêkê rizgar bûne.



Herdu zarokên kurd li malê bi kurdî diaxivin û Asmîn diyar dike ku bi xêra vê yekê dema ew diçe betlanê li Kurdistanê, ew dikare bi mirovên xwe re bi hesanî têkiliyan deyne. Malbata Ozdemîr salane 4 hefteyan diçe Kurdistanê û li wir betlaneya xwe dike. Şahan wiha behsa çavdêriyên xwe yên li Kurdistanê dike: "Cizîr û Hezex 30 km ji hev dûr in. Gellek mirovên min li wir hene. Weke li vir, ewqas otomobîl li wir nîn in. Teknolojiya li wir jî ne wekî ya li vir pêşketî ye. Lê ew otomobîlên li wir heyî jî, li lampeyên sor yên trafîkê nasekinin. Kes ji bo wan lampeyan xeman naxwe."

Şahan balê dikişîne ser wê yekê ku dema ew bibe 18 salî, ewê êdî bikaribe dengê xwe jî di hilbijartinê de bide. Li Almanya derdorda 15 milyon esilbiyanî dijîn. Ji van nîvê wan bûne hemwelatiyên Almanyayê. Hersal zêdeyî sed hezar biyaniyên li vî welatî dijîn mafê hemwelatîbûnê bidest dixin. Hejmara Kurdên dibin hemwelatiyên Almanyayê jî hersal bilindtir dibe.

# HÊLÎNA 15 SALÎ BÛ QEHREMANA ALMANYAYÊ

Mihemed Zeyno



"Ji armanca xwe dûr nekeve û ti caran bêhêvî nemîne."

Keça kurd ya 15 salî Hêlîn Mamo di 22.06.2013 de li bajarê Almanya Straubingê yê nêzîkî bajarê Munchenê di berxwedaneke dijwar de li dijî keça alman Jana Ring biserket û di kategoriya "Leichtgewicht" de bû qehrema Almanyayê û medalyaya zêrîn wergirt. Hêlîn bi salan e li bajarê Dortmundê di klûba Boxsport 20/50 de rahênan dike.

**Hêlîn, ev serkeftin pîroz be li te.**

Gellek sipas, ez weke keçeke kurd gellekî serbilind im bi vê serkeftina xwe.

**Tu îro bûyî qehremana Almanyayê, ji bo serkeftineke wiha pêwîst e mirov çi bike?**

Mirov divê ji armanca xwe dûr nekeve û ti caran bêhêvî nemîne, her wisa jî piştgiriya malbatê gellekî pêwîst e.

Bavê Hêlînê jî gellekî bi serketina keça xwe ya ciwan kêfxweş e: "Ev serketina Hêlînê serbilindayî ye ji hemû xort û keçên Kurdan re.

**Wek bav bi çi awayî hûn piştgiriya keça xwe dikin, da ku wisa serketi be?**

"Ji biçûkiya wê de min dît ku keça min gellekî zîrek e di werzişê de û min jî bi her awayî piştgiriya wê kir û rê li ber wê vekir. Ez bi hêvî me ku dê û bavên xort û keçên me Kurdan li vî welatî li zarokên xwe miqate bin û astengiyan li pêşiya wan nehêlin û nebin kelem li ber wan."

**Hêlîn tenê di warê werzişê de serketî ye, yan di xwendina xwe de jî wisa zîrek e?**

"Ew di xwendina xwe de jî wisa serketî ye û ew ya yekem e di pol û dibîstana xwe de û ew di hemû waran de wisa zîrek û jêhatî ye."

Hêlîn heta niha di gellek pêşbaziyên li seranserî Almanyaye de bi wêrekî li ber xwe daye û biserketiye. Vê serketina Hêlînê ya dawiyê cihekî berfireh di çapemeniya almanî de jî girt, bi taybetî li eyaleta NRW.

Hêjayî gotinê ye ku malbata Hêlînê ji Rojavayê Kurdistanê ye û ev demeke dirêj e ku ew li bajarê Almanya Lunen yê nêzîkî Dortmundê dijî.





# Loke û Mîre li Qibrisê bûn

Stranbêj Loke Zahir û Mîre li Qibrisê ahengekê saz kirin. Helkewt Zahir ku karê hunerî yê wan herdu stranbêjan birêvedibe, ji Rûdawê re got: "Herdu stranbêj di roja 28ê Pûşperê de serdana Qibrisê kirin û biryar bû 4 rojan li wir bimînin, li wir ahengekê ji wan geştyarên kurd re yên ku diçin Qibrisê re saz bikin."

Herdu stranbêj ji xeynî ahenga hevbeş, heta niha çend berhem bi hev re tomar kirine, wek straneke li ser Remezanê û straneke bi navê "Hemewend" ku behsa dîroka şoreşên Kurdistanê dike.



# Dueta kurdî-yewnanî amade dibe

Stranbêjê ciwan Karox Mela Esad ragihand ku ew ligel stranbêjeke yewnanî bi navê Enfista Fitaly mijûlî tomarkirina stranekê ye.

Karox ku xwediyê berhemekê ye û di eynî demê de rojnamevanê warê hunerî ye, ji Rûdawê re got: "Ez û stranbêja yewnanî xanim Enfista Fitaly bi hev re stranekê bi zimanê kurdî û yewnanî amade dikin." Navborî axaftina xwe wiha qedand: "Ew stran ji teksta mamoste Cebar Hebîb e û ji awaza Rewend Selah e. Stranbêj Saman Şewket xerciyên berhemê dabîn dike."

Karox û Fitaly bi niyet in li giraveke Yewnanistanê klîpa vê berhemê bikişînin.

# RÛDAW jiyana *Cewher Namiq* dike fîlm

Kanala RÛDAW teklîf li derhênerekî kurd kiriye, da ku belgefîlmekî li ser jiyana Cewher Namiq amade bike. Derhêner Emîr Teha, ku bi vî karî hatiye teklîfkirin, ji Rûdawê re got ku fîlm niha di qonaxa montajê de ye.

Fîlm 48 xulekan dirêj e û bi kalîteya HD hatiye kişandin. Emîr Teha got: "Ev fîlm behsa jiyana kak Cewher dike, wek kesayetiyeke siyasî û wek pêşmerge û jiyana wî ya parlemeterî û hemû aliyên din. Herwiha behsa wê demê dike ku piştî dirustkirina Serokayetiya Demkî çû navçeya Behdînan û Bakurê Kurdistanê. Lewma beşekî wênegirtina fîlm li Bakurê Kurdistanê bû, nemaze li navçeya Şirnex, Batman û Midyadê. Herwiha wêneyê wê dibistanê tê de ye ku li Yewnanistanê lê xwendiye û wê dema ku li Swêdê jiyaye."

Hunermend Sakîna di sala 1973yê de li navçeya Gimgimê (Varto) ya ser bi Mûşê hate dinyayê. Sakîna di nav malbateke elewî de mezin bûye û ji nêz ve bi mûzîkê re têkîldar bû. Sakîna di 1991ê de di nav Koma Mezrabotan de wekî vokalîst stran gotine. Piştî ku wê demekê navbar dabû karên xwe yên muzîkê, Sakîna ji bo filmê bi navê Bêrîtan strana "Bêrîtanê" amade kir û bi vê stranê dîsa vegeriya jiyana xwe ya mûzîkê.

Piştî ku Sakîna di 2006ê de derket Ewropayê, wê digel Orkestraya navnetewî ya Viyenayê (VIO) gellek konsert dan. Herwiha ev çend sal in ku Sakîna digel komeke şanoyê ya kûçeyan a împrovîze bi nivîsar û stranên xwe hunera xwe pêşkêş dike. Hunermenda kurd di bihara 2011ê de komeke bi navê TRİO MARA ku ji sê jinan pêk tê damezirand. Trio Mara stranên klasîk ên kurdî û stranên jinan bi piyano û kemanê pêşkêş dike û herwiha formên kelepûrî bi formên nûjen digihîne hev.

Hunermenda ku li welatên Ewropayê yên wekî Almanya, Awisturya, Holenda û Frensayê gellek konser dan, wekî din digel hunermend Mehmet Akbaş li çendîn bajar û welatan konserên hevbeş dan. Sakîna di destpêka 2012ê de bi yekemîn albûma xwe ya bi navê ROYÊ Mİ derket pêşberî guhdarên xwe. Em bi hunermend Sakîna re li ser xebata wê axivîn.



# Vokalîsta TRİO MARA:

# Eyşa Şan û Meryem Xan îdolên me ne

**Rûdaw: Hûn dikarin behsa xebatên koma TRİO MARA bikin? Çima tenê jin? Hûn muzîkeke çawa çêdikin?**

**Sakîna:** Ji mêj ve projeyek û xeyalek min hebû ku komeke muzîkê ya ji jinan pêk tê damezrînim. Ji xwe Nûrê û Nazê mirovên hevi n. Min ji wan re pêşnîyazek bir û wan jî qebûl kirin. Bi wî awayî projeyê destpêkir.

"Trio" bi latini tê wateya sê. Peyva "Mara" jî me bi taybetî hilbijart. Mara bi zaravayê kirmanckî ango bi zazakî tê wateya "ji me". Ev peyv herwiha tê wateya dayîkê. Di erebî de jî wateya Mara jin e, di ermenkî de jî dayîk e. Ji ber ku di gelek zimanên herêma me de tê wateya jin û dayikê, me ew hilbijart. Di projeya Trio Mara de Nûrê Dilovan li kemanê dixe, Nazê Îşxan li piyanoyê dixe û ez jî vokalîst im.

Naveroka muzîka Trio Mara klasîka kurdî û gelêrî ye. Bingeha muzîka kurdî ya gelêrî diparêze û bi vêya têr nabe, harmoniyekê ligel muzîka gerdûnî û ya nûjen çêdike. Di repertûara me de stranên muzîka klasîk ya kurdî ku ti carî kevin nabin hene. Bi taybetî Nazê Îşxan wan ji nû ve aranje dike. Ligel stranên kurdî em cîh didin stranên bi zimanê din jî, di konserên xwe de em hinek mînakan ji zimanên din jî pêşkêş dikin.

Li welatê ku em jê tên, li Kurdistanê, êş, şer û berxwedan qet kêm nebûne. Em weke sê jin hewl didin bûyerên ku li erdnîgariya Kurdistanê rûdane bînin zimên. Gellek hunermendên jin yên ku dengbêjî dikirin ji ber nêrîna civaka mêrane û hinek kevneşopî û baweriyên olî rastî gellek zehmetiyan hatin. Ligel gellek zehmetî û astengiyan helwesta dengbêjên weke Eyşa Şan û Meryem Xanê gellekî bi wate bû. Em wê mîrasa bi wate dixwazin ji xwe re bikin bingeh. Em wek sê jinên kurd dixwazin di rêwîtiya xwe ya hunerê de trajediya jinên axa xwe, evîn û êşên wan bi newa û stranên wan bînin ser zimên.



**Di klîpên xwe de hûn dîmenên dokumenter jî bikartînin, sedema vê yekê çi ye?**

Klîp ji bo balkişandina guhdarvanan bo ser stranê tiştekî gellekî girîng e. Ji ber ku xîtabî çavê guhdarvanan jî dike. Mixabin di roja me ya îro de hinek klîpên muzîka kurdî yên ku tên weşandin di gellek xalan de divê mirov wan rexne bike. Mirov ji guhertina kinc û şiklê kesê stranan dibêje, nikare stranê bişopîne. Li hemberî xebatên wiha rexneyên min hêne. Ji ber vê jî naxwazim bikevim xefka populîzmê. Armanca min ne ew e ku bi klîpan xwe derxînim pêş. Li gor nêrîna min her stranek xwediyê çîrokeke taybet e û peyameke xwe heye. Divê mirov bi klîpan wan peyaman bide. Ji xwe derfetên min yê aborî nînin ku ez bi pereyên mezin klîpan çêkim. Ji ber vê jî hîn bêhtir ji performansên xwe yên zindî vîdyoyan parve dikim û hinek dîmenên dokumenter jî bikartînim.

**Hûn van rojan bi navê "SAKINA & ANADOLU QUARTET - Mesopotamian Sounds - Ethno meets Classical" konsertan didin. Hûn dikarin behsa vê projeyê bikin?**

Ev rêzekonsert wek proje di Nîsana îsal de pêşket. Planek demdirêj nebû. Me bi tomarkirina du stranan destpêkir û me xwe di nava amadekirina konsertan de dît. Ev proje ji bo min ji çend aliyan ve balkêş bû. Her çar hunermendên Anadolu Quartet jî Tirk bûn. Lê têkîliya wan bi taybetî bi muzîka kurdî û bi muzîkên gelen din yên Anatolyayê re jî pirr xurt bû. Ev tablo li Tirkiyeyê zû bi zû mirov nikarîbû bibîne.

Endamekî vê komê li Dersîmê dijî. Du endam jî amadekariyan dikin ku herin li Dersîmê bijîn. Sedem tenê ev e ku ew wê xapandina ku siyaseta dewleta dagirker pêşxist rexne dikin û dixwazin li ser wê axê rastiyan bişopînin. Berê wan bi hunermendên weke Tara Caf û Mehmet Atli re jî xebatên konsertan kiribûn. Lê li Ewropayê cara yekemîn bi van rêzekonsertan xwe dan nasîn. Li Bielefeld, Köln, Frankfurt û Berlinê me çar konsert dan. Wek ji navê projeyê tê fêmkirin, em muzîka gelerî ya gelên Anatolyayê bi enstrûmanên rojavayî yên klasîk tînin cem hev û sentezekê çêdikin. Repertuara projeyê bi pirranî kurmancî û kirmanckî (zazakî) ye. Lê em bi zimanê ermenkî, tirkî û yewnanî jî distirên. Heman demê de endamên komê ji Behra Reş tên, ji ber wê jî ji wê herêmê jî stranan dibêjin. Bi rastî guhdarvanan zêde rexneyên erênî kirin. Em dixwazin payîzê anjî zivistana pêş me rêzekonsertên din jî lidarbixin.

**We demekê bi profesyonelî sîyaset jî kir, we çawa karê hûnerî û sîyaset bi hevre dikir?**

Beriya ku ez karên sîyasî bikim, ez xebatkareke Navenda Çanda Mezopotamya li Stembolê bûm. Min beriya siyasetê karê hunera kurdî dikir. Lê destpêka salên 90î li Kurdistanê şer û serhildana gel zêde pêşketibû û min têr nedidît ku karê hunerê tenê bikim. Ji ber vê jî min berê xwe da karên siyasî û qadên din ê têkoşînê. Bi meşandina karên siyasî ên profesyonel, têkîliya min bi hunerê re lawaz bû. Hin caran wexta em bi hevalan re dihatin cem hev, ango hinek çalakiyên çandî dikir, min çend stran digotin. Lê ev kar ji bo min li paş bû. Min ji xwe re hertim stran digotin. Lê ji ber ku derfetên teknîkî nebûn, min heşt salan qet muzîk guhdar nekir. Agahiya min ji pêşketinên muzîkê qet nebû. Bi kurtî min karê hunerî nedikir.

*Hevpeyvîn:* ***Seyîdxan Kurij***

## Parêzgarê Kerkûkê, Dr. Necmedîn Kerîm:

# Divê Kerkûk jî tevlî referendûmê bibe


Wêne: Rûdaw

Heftiya borî parêzgarê Kerkûkê û endamê polîtburoya YNKê Dr. Necmedîn Kerîm mêvanê bernameya “Kevana Sor” ya televizyona Rûdawê bû. Di wê bernameyê de hilbijartinên civata parêzgeha Nînewayê, kêşeyên îdarî li Kerkûkê, saxlemiya Talebanî, destûr, siberoja YNK û çend mijarên din hatin behskirin. Dr. Necmedîn derbarê saxlemiya Mam Celal de got: “Eger ti kêşeya Mam Celal nebaya, wê heta niha vegeriyaya.”

**Rûdaw: Encamên dawî yên hilbijartinên parêzgeha Nînewa hatin ragihandin. Ji ber gilînameya YNKê û opozisyonê 58 hezar dengên Kurdan şewitîn. Gelo ne di berjewendiya Kurdan de bû eger we ew gilîname bilind nekira?**

**Dr. Necmedîn:** Diyar e lîsteya Birayetî û Hevjiyanê dengê yekê anî. Ev destkefteke mezin e. Bi baweriya min nabe sextekarî bê kirin, sextekarî xerab e. Eger em bi sextekariyê bi ser bikevin, wek cihê din li me jî tê, lê di vir de çewtiyek hatiye kirin.

**Bi baweriya we, ew 58 hezar dengên ku hatin redkirin hemû sexte bûn?**

Na. Eger gilîname jî hebûna, divabû li berendam bihatana kirin, lê ne li tevahiya sindoqê.

**Li li zêdeyê 100 sindoqan hat kirin.**

Ev karekî xerab e. Ev nîşana nebûna hevahengiyê ye.

**Çima hevahengî nebû, we got wek YNK em dozê venakin, lê dûre endamên we yên di komisyonê de gotin divê ew sindoq bên redkirin.**

Nizanim gotine hemû sindoq yan na. Lê eger gilî li ser hemû sindoqê be, bêguman ev çewtî ye. Divabû neyê kirin. Lê dîsa dibêjim em li Mûsilê biserketin, me 11 kursî anîn. Niha tiştên giringtir li ber me hene, ew jî damezrandina wê hikûmetê ye. Kes bêyî lîsteya me nikare hikûmetê li wir dirust bike.

**Gelo hilbijartinên parêzgeha Nînewayê ne pirseke stratejîk bû?**

Bêguman.

**Baş e eger pirseke stratejîk be, peymaneke we ya stratejîk ligel PDKê heye, wateya wê çi ye ku hûn 58 hezar dengan red bikin?**

Hûn her dibêjin YNK, lê Goran û Yekgirtû û Komel jî doz vekirin. Careke din jî dibêjim, divabû gilî ne li lîsteyê, lê li berendam bihata kirin.

**Ji dema ku hûn parêzgarê Kerkûkê ne, çi guherîn di rewşa Kerkûkê de bûye?**

Dergehê bajêr hatiye guherandin, hundirê bajêr jî, elektrîk baş bûye, bêkarî kêm bûye, gellek kes li Kerkûkê hatine wezîfedarkirin.

**Lê li ser van wezîfedarkirinan gilî zêde ne.**

Ji aliyê kê ve?

**Ji aliyê PDKê ve. Heft hezar kes hatine wezîfedarkirin, tenê 500 ji wan alîgirên PDKê ne.**

Ev ne rast e. Kesên wiha dibêjin bila belgeyan bînin.

**Şêwaza wezîfedarkirinê çawa ye, bi form e yan tîrûpişk e?**

Na, lîsteya ti partiyekê nehatiye wergirtin. Kesê bêje lîsteya partiyan hatiye wergirtin rast nabêje. Tenê lîsteyek ji aliyê PDKê ve ji min re hat, min ji nav wê lîsteyê hin kes neqandin.

**Kê ji te re şand?**

Liqa PDKê li Kerkûkê.

**Yanî bi awayekî eşkere destê partiyan di wezîfedarkirinê de hebû?**

Na, min hemû lîste qebûl nekir.

**Lê PDK giliyan ji we dike ku hûn alîgirên PDKê diqewitînin?**

Wek?

**Wek rêveberê werziş û lawan. Heta behsa diktorekî dikin li parêzgehê, we cihê wî daye birînpêçekî YNKê?**

Ev cara yekê ye dibihîzim ku min cihê diktorekî daye birînpêçekî. Ez çend nivîsaran nîşanî te bidim ku ji liqa PDKê ji min re hatine ji bo wezîfedarkirin û guherîna xelkê. Ji liqa PDKê nivîsar ji min re hatiye dibêje filan alîgirê PDKê ji kar derxe ji ber ku berpirsê liqê hatiye guhertin, dibêje ji ber rewşa saxlemiyê wî kesê biguherin. Derbarê rêveberê werzişê de jî, pêwendiya me pê tine. Ew biraderê berpirsê werziş û lawan navê wî li lêpirsîn û dadweriyê hebû, wezîrê werziş û lawan li Bexdayê biryara dûrkirina wî da.

**Dibêjin hin berpirsên PDKê li jêr fişarê de ne ku bibin hevalên YNKê, da ku di postên xwe de bimînin?**

Ez di rûyê te û hemû alîgirên PDKê yên ku vê gotinê dibêjin de dibêjim baweriya min bi wê yekê nayê mirov xelkê bi tirsa wezîfeyê bîne û wan bike hevalê filan alî. Eger mirov alîgirekî PDKê li jêr fişarê bike hevalê YNKê, ti cudahiya wî tine ligel wan Turkmen û Erebên ku em partiyan ji wan re datînin û wan dikin hevalên PDKê an YNKê.

**Hûn li Kerkûkê partîzaniyê nakin?**

Na.

**Çima di serdanên xwe de hûn endamên malbenda YNKê bi xwe re dibin?**

Min daxwaza endamên liqa PDKê jî kiriye, çûme Dûbiz, çûme wan cihan, me doz li wan kir û endamên navçeyan şandine.

**Pêwendiyên te ligel pêkhateyên din çawa ye?**

Ligel pêkhateyên din pêwendiyên me normal in. Nemaze bi xelkê re. Tew ligel lîderên wan jî bi berdewamî pêwendiyên me hene. Hemû tên ba me. Em jî diçin ba wan.

**Rewşa asayişî çi pêşketin dîtiye. Berdwam teqîn derdikevin. Çima we kontrol nekirine?**

Derbarê rewşa asayişî ya Kerkûkê de, me di vê demê de hindek pêrabûn kirin, bi taybetî piştî girtina serokê El-Qaîde yê li başûrê Îraqê. Herwiha kuştina wî kesê ku li şûna wî hatibû danîn û çend kesên din û berpirsên Ensarulsunne. Destpêkirina pêkanîna vê xendeqê rewşa asayişî ya Kerkûkê baştir bû. Ez bawer im ku piştî bidawîbûna vê xendeqê gelekî baştir dibe.

**Hûn yek wan kêm kesan in ku dikarin Mam Celal bibînin. Tendirustiya Mam Celal çawa ye?**

Tendirustiya Mam Celal ber bi başbûnê ve çûye. Ji wê baştir e ku me bendewarî dikir. Beriya kêmtir ji heftiyekê ez bi telefonê bi Mam Celal re axivîm. Erê tendirustiya Mam Celal çareser dibe. Mam Celal ji me dûr e lê bi me re ye.

**Ji hemû endamên polîtburoyê çima tenê cenabê we dikare Mam Celal bibîne?**

Ji ber ku ez doktor im û bi nexweşiya wî dizanim.

**Lê heta niha endamên polîtburoya YNKê jî nikarin bi vê piştrastiya ku cenabê we diaxive wiha biaxivin.**

Doktorê ku tedawiya wî dikin bi rastî biryar didin kengî xelk dikarin herin cem wî. Mam Cela jî bêhtir ji 60 salan xebat kiriye. Ji bo vî miletî westiyaye. Eger salekê jî yan 6 mehan weke rêdanê jî bide çareseriya xwe heta ku tê, çima ev maf jê re nebe.

**Mam Celal baş dikare biaxive?**

Mam Celal di her tiştî de têdigihije. Tiştê ku ne bi dilê wî be, weke carê dilteng dibe. Mam Celal xwarinê jî dixwe.

**Tendirustiya wî di wê astê de ye ku karibe li ser pirsa siyasî nêrîna xwe bide? Yan biryarê derxîne?**

Helbet eger ti kêmayiya Mam Celal nebûya û her tişt baş bûya dihat vê derê. Mam Celal hê jî pêwîstiya wî bi tedawiyê heye, hê jî nebûye weke berê, lê wek min got jî, ew ber bi başiyê ve diçe.

**Di wê astê de ye ku nêrîna xwe ya siyasî bide?**

Ji aliyê jiyana rojane ve, ji aliyê siyasî ve, ji hemû aliyan ve, hê jî pêwîstiya wî bi tedawiyê heye. Herwiha ew nikare were wê rolê bibîne. Eger karîba were wê rolê bibîne, doktorên wî wê biryarê bidin.

**Niha nêrînek heye ku Kerkûk jî beşdarî nivîsandin û dengdana li ser destûra Herêma Kurdistanê bibe, tew beşdar be di hilbijartina serokê Herêma Kurdistanê de jî. Ji ber ev biryarên ku ji vir derdikevin bandora wan li ser Kerkûkê jî heye.**

Spasiya te dikim ku te behsa vê babetê kir. Min bi xwe çend caran behsa vê kiriye, ku ne tenê li ser destûrê, lê belê ji bo hilbijartinên parlementoya Kurdsistanê jî divê mafê beşdariyê ji navçeyên derveyî Herêma Kurdistanê re jî hebe. Ji ber ku ev parlemento biryarê li ser hemû Başûrê Kurdistanê dide. Lê nûnerên Kerkûkê ne tê de ne. Çend caran min Kroatya wek mînak aniye. Ku hilbijartin tên kirin ew Kroatên ku li Bosnayê dijîn jî beşdarî dibin. Nûnerên wan jî li parlementoyê hene. Rexneya min li vê destûrê jî heye ku çareseriya van deveran bi tevayî nekiriye.

**Eger destûr têkeve referandûmê, hûn wiha nabînine ku rewahiyekê dide ku Kerkûk beşek ji Kurdistanê ye?**

Eger ev destûr bêyî xelkên Kerkûk, Şengal, Xaneqîn û cihên din têkeve referandûmê, wateya wê wiha ye ku ne rewa ye ku ev navçe beşek in ji Kurdistanê.

**Mekanîzmeke we ji bo vê yekê heye?**

Bi baweriya min, ew ên ku xelkên Kurdistanê ne, ne tenê Kurdên li Kerkûk û wan deveran in. Lê belê Ereb û Tirkmen jî divê mafê wan hebe ku deng li ser destûrê bidin.

*Hevpeyvîn:*
***Rêbwar Kerîm Welî***

**Eger mirov alîgirekî PDKê li jêr fişarê bike hevalê YNKê, ti cudahiya wî tine ligel wan Turkmen û Erebên ku em partiyan ji wan re datînin û wan dikin hevalên PDKê an YNKê.**


Wêne: Rûdaw



# Konferansa Aştî û Demokrasiyê bawerî da Elewiyan

**Zekî Ozmen**

Konferansa Aştî û Demokrasiyê ya durojî dawiya heftiya bori li Bruksela paytexta Belçîkayê pêk hat. Bi giştî nûnerên 58 saziyên kurdî û kêmneteweyên ji Bakurê Kurdistanê û Tirkiyeyê beşdar bûn. Hejmara beşdaran jî 350 kes bû. Ev konferans berdewamiya wan konferansan bû ku li ser bangewaziya rêberê PKKê Abdullah Ocaln li Enqerê û Amedê hatibûn pêkanîn. Armanc ew e ku hem bi vê yekê piştgiriya ji bo pêvajoya aştiyê ya di navbera PKKê û dewleta Tirkiyeyê de destpêkiriye were qewînkirin û hem jî daxwazên hevpar derbarê pêvajoyê de derkevin pêş. Konferansa dawiyê jî wê li Herwlêrê were sazkirin.

### Paralleltiya konferansa Enqerê

Di warê naverokê de ev konferans gellekî ji ya Amedê dûr bû û nêzîkî konferansa li Enqerê bû. Zimanê konferansê jî ji ber vê egerê bi tirkî bû. Ji ber zimanê konferansê bi tirkî bû, mêvanên kurdîaxêv di nava xwe de nerazîbûn dianîn zimên lê bi fermî di vî warî de bang li birêveberên konferansê nehat kirin. Ji bilî meseleya zimên, ji ber naveroka konferansê di çarçoveya vehewandina dîtinên kêmnetewe û olên cûda yên li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê de bû, beşdarên ji fraksiyonên kurd yên dûrî PKKê hem matmayî man û hem jî bû sedem ku bertekan nîşan bidin. Bendewariya beşdarên kurd yên di warê siyasî û rêxistinî de dûrî PKKê ew bû, ku ev konferans jî wekî ya li Amedê malovaniya tifaqa di navbera Kurdan de bike. Di vê bareyê de endamê lijneya amadekar a konferansê û hevserokê YEKKOMê Yuksel Koç anî zimên ku ji destpêkê ve konsept bi wî şêweyî bû ku civîna Brukselê di paralleltiya ya Enqerê de be. Yuksel Koç herwiha got ku konferansa li Amedê parçeyê Bakurê Kurdistanê di nava xwe de dihewand û ya Hewlêrê jî wê nûnerên hemû parçeyên Kurdistanê di nava xwe de bihewîne.

### Berteka Elewiyan ya li hemberî pêvajoyê bû piştgirî

Ji hêla din ve ev konferans bû zemîna lihevkirina Elewî û Kurdan. Gellek sazî û kesayetên Elewiyan ji peyama rêberê PKKê Abdullah Ocalan a Newrozê bêzar bibûn û helwest nîşan dabûn. Ji ber van bertekan BDPê civînek berfireh ligel nûnerên Elewiyan lidarxistibûn. Di vê konferansê de ev nerazîbûn berovajî bibûn. Jixwe rêberê PKKê Abdullah Ocalan jî di peyama xwe ya ji bo konferansê de cihek girîng ji bo pirsgirêkên Elewiyan veqetandibûn. Peyamên Ocalan yên di vê bareyê de Elewiyên beşdar kêfxweş kir. Ne tenê ev yek, ji bilî çend saziyên din, bi taybetî rola Federasyona Yekîtiya Elewiyan ya Ewropayê (AABF) berbiçav bû. Serokê AABF şaxa Awisturyayê di hevpeyvîneke bi me re destnîşan kir ku di dîroka yeyê û Bakurê Kurdistanê de ev yekem car e ku evqas nûnerên kêmnetew û olên cuda di konferansekê de digihijin hev. Derbarê rola wan wek Elewî di konferansê de jî, wî bi serbilindî diyar kir ku ew ne mêvan in lê ew malovaniyê dikin. Herwiha di heman çarçoveyê de axaftina girtina konferansê jî serokê KONGRA-GEL Remzî Kartal û serokê giştî yê AABFê Turgut Oker kirin. Bêguman destnîşankirina herduyan ji bo vê yekê ne bi tesadufî bû.

**Axaftina girtina konferansê jî serokê KONGRA-GEL Remzî Kartal û serokê giştî yê AABFê Turgut Oker kirin.**

Xaleke din ya balkêş ya konferansê xweşbîniya di navbera nûnerên sazî û dezgehên netew, ol û mezhebên cûda de bû. Rexneyên hişk yên nûnerekî Ermeniyan li Kurdan, yên Elewiyan li hemberî Suniyan û yên fraksiyonên kurd li PKKê di çarçoweya atmosfereke xweşbînî û tehemûla rexneyan de hatin guhdarîkirin.

### Li Ewropayê Ewropa hat piştgûhkirin

Digel ku bi awayekî rêkûpêk derbarê pirsgirêkên koçberên ji Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê yên li Ewropayê dijîn de û kelemên veger û niştecihbûna wan a li welêt hate gûftûgokirin jî, lê fokûsa konferansê bêtir derbarê siyaseta Tirkiyeyê ya navxweyî de bû. Herwiha xalên derbarê siyaseta welatên ewropî ya beramberî Tirkiyeyê jî di çarçoweya bîrdoziya çepîtî û dijemperyalîzmî de hatin nîqaşkirin.Vê yekê hem xwe di encamnameyê de û hem jî di biryara avakirina komisyonan de nîşan da. Tenê di xala 11mîn ya encamnameyê de bang li hikûmetên ewropî hate kirin ku ev welat di çarçoveya rênîşaneyên Yekîtiya Netewan de tevbigerin. Banga ku welatên ewropî êdî çekan nedin Tirkiyeyê û divê bûyera Parîsê were ronîkirin jî di nava vê xalê de bû. Herwiha ji 6 komisyonên ku werin avakirin tenê yek jê wê karûbarê agahdarkirina raya giştî ya ewropî bigire ser milên xwe. Komisyonên din rasterast elaqeya wan bi xebata ku li Tirkiye û Bakurê Kurdistanê were kirin hene.



Ji ber ku di realîtê de hem beşdar li welatên ewropî dijîn û hem jî xebatên komisyonan wê li Ewropayê werin meşandin, diviyabû hem biryar û hem jî komisyonên bi hêz ji bo xebata li Ewropayê bihatana damezrandin. Nebûna lobî û kelemên li pêşiya xebatên dîplomasiya li welatên ewropî diviyabû bibûya peywira komisyonên profesyonel. Pirraniya komisyonên ku biryara damezrandina wan hat dayîn, jixwe di konferansên Enqere û Amedê de jî biryara damezrandina wan hatibû dayîn.



# Xwepêşandanên Rojhilata Navîn û Amûdê

**Wladimir van Wilgenburg**

Ewa ku jê re tê gotin "Buhara Erebî" wiha kir ku bizava fireh a nerazîbûnan li seranserê Rojhilata Navîn geş bibe û Kurd jî ketin jêr bandore wê. Ji nişka ve li Tirkiyeyê dest bi nerazîbûnan hat kirin û dûre jî li Brazîlê nerazîbûn derketin. Digel vê yekê jî ew xwepêşandan pirr cuda ne ji yên ku li Ewropa û Amerîkayê tên kirin.

Vê dawiyê li bajarokekî biçûk yê bi navê Amûdê xwepêşandan û girevgirtin li dijî girtina çalakvanan ji aliyê PYDê ve, ku girêdayî PKKê ye, hatin sazkirin. Di encama van karan de jî teqîn çêbûn û çend kes hatin kuştin.

Ev nîşan dide ku PYD hêj ne amade ye ku reftareke rast ligel xwepêşandanan û navendên sivîl ên nerazî bike. Di demekê de ku PYD hewl dide hikûmeta de fakto li navçeyên kurdî yên Sûriyê damezrîne, lê belê hêj hêza polîsan danemezrandiye ku li şûna çekan gaza rondikrêj li ser xwepêşanderan bibarîne. Partiyên kurdî yên Iraqê jî heman kêşeya wan heye û pirr caran gava xwepêşandanek rû dide, yan xelk tên kuştin an rojnamevan tên êşandin.

Bûyerên Amûdê wan bûyeran tînin bîra min ku di sala 2011ê de li Silêmaniyê rû dan û di wan de hêzên parastina asayişê yên ser bi PDKê gule berdan xwepêşanderên ku kevir diavêtin baregehên sereke yên PDKê li Silêmaniyê. Her çiqasî PKK naxwaze ev bûyerên niha bi bûyerên wê demê re bên berhevkirin.

Gava bûyerên Amûdê rû dan, Tirkiye, Îran, Sûrî, Iraq û PKK û PDKê hokarên derketina bûyerên Amûdê vedigerînin destêwerdana derveyî. Hin jî kuştina xwepêşanderan rewa dikin, ji ber ku wek ew dibêjin "destên derve" li pişt wan hebûn. PKKê jî Tirkiye û PDK û medyaya biyanî bi desttêwerdana derveyî tometbar kir, Îran û Sûriyê jî Îsraîl û welatên rojava bi wê desttêwerdanê tometbar dikin. PDKê jî Îran bi derxistina bûyerên Silêmaniyê tometbar kir.

**Lewma jî tenê wek xwepêşandan nayên dîtin, lê wek rikberî.**

Di demekê de ku bi berdewamî li Ewropayê jî xwepêşandan hene, lê xwepêşandanên wir ligel ên li Rojhilata Navîn nayên berhevkirin. Xwepêşandanên li Ewropayê bi giştî ji bo çêkirina reform an guherandina siyaseta hikûmetê ne, lê xwepêşandanên Rojhilata Navîn timî wek gef ji bo hilweşandina hikûmetan tên dîtin. Di encamê de jî li Rojhilata Navîn timî şîdet derdikeve holê. Lewma di dema xwepêşandanan de komên çekdar bi roleke sereke radibin.

Partiyên siyasî li Rojhilata Navîn hewl didin navçeyê kontrol bikin. Her çiqasî hilbijartin jî hene, lê ji bo kontrolkirina pirraniya sêktorên aborî û civakî, ew partî her di nav hewldanan de ne. Xwepêşandan dikarin desthilata wan partiyan bileqînin û lawaz bikin. Lewma jî tenê wek xwepêşandan nayên dîtin, lê wek rikberî. Li Sûriyê, digel hebûna şerê navxweyî, bikaranîna darê zorê ji aliyê komên çekdar ve hêj hêsantir e, ji ber ku serkutkirina wan yekser bi "dijminan" ve girêdidin.

Lê diyar e ku wê xwepêşandan bidomin û zêdetir bibin. Di siberojê de dibe ku xwepêşandan pirrtir bibin li dijî partiyên siyasî, li Iraq û li Sûriyê jî. Lewma pirr caran berhevkirina xwepêşandanên Rojhilata Navîn bi yên Ewropayê re ne rast e. Dibe ku hin tişt wek hev bin, lê di dawî de pirr ji hev ciyawaz in.



# Şertên bivênevê yên demokrasiye

Selahattin Çelik

Eger,

● **Em Kurd bikaribin nasnameya xwe ya neteweyî bi şanazî li her derê nîşan bidin û nasnameya me bi fermî bê naskirin,**

● *Em Kurd bikaribin bi awayekî fermî bi zimanê xwe perwerde bibin û zimanê xwe li her derê bi serbestî û serfirazî bikarbînin û mafê bikaranîna zimanê me tenê de destê me de be,*

● **Weke Tirkan, em Kurd jî bi navê xwe di pergala zagonsazî, rêvebirî û dadmendiyê de cih bigirin,**

● *Navê Kurdistanê bê pejirandin,*

● **Kurd ne bi dîroka Tirkan, lê bi ya xwe perwerde bibin,**

● *Ne Siltan Fatîh, Yavuz, Sileyman û Mustafa Kemal û yên din, lê Şêx Seîd, Seyîd Riza, Qazî Mihemed û yên din bi fermî bavûkalên me bin,*

● **Cihên tirbên bavûkalên me bên eşkerekirin û em bikaribin ji bo wan bîrdariyan biçikînin,**

● *Nîşan, remz û dirûşmeyên nîjadperest ên tirk ji çiya û kolanên me bên rakirin,*

● **Di pergala perwerdeyê, leşkerî, hiqûqî, karûmijûlî, spor û yên din de wane, sond û dirûşmeyên nîjadperest bên rakirin û li seranserê Tirkiye û Kurdistanê nîjadperestî di her qadê de bê qedexekirin,**

● *Leşkeriya mecbûrî bê rakirin,*

● **Ji bo Kurdên di leşkeriyê de hatine kuştin vekolîn bên kirin,**

● *Parlement û artêş bi fermî ne yên Tirkan tenê, lê yên herdu gelan bin,*

● **Dezgehên bi mebesta înkarkirina dîrok, ziman û çanda Kurdan hatine damezrandin, bên pelişandin,**

● *Berhemên dirokî û çandî yên Kurdan bi nasnameya xwe bên nasandin,*

● **Kurd bikaribin navên kurdî bi awayekî azad û fermî bikarbînin,**

● *Navên resên ên gund, rûbar, deşt, çiya û ajalên me bên bikaranîn,*

● **Ji ber nasnameya kurdî ti kes di girtîgehan de nemîne û herwiha rêya girtina wan bi zagonî bê girtin,**

● *Kurd bi awayekî azad bikaribîn saziyên lêkolînê ji bo dîrok û çanda xwe damezrînin,*

● **Hêzên taybet ên bi xwînrijandina Kurdan navdar, bên pelişandin,**

● *Qedera kesên winda û kuştinên kujernediyar bên eşkerekirin û bi van mebestan bi demûdezgehî lêkolîn û lêpirsîn bên destpêkirin,*

● **Pergala cerdevaniyê bê pelişandin,**

● *Gundên valakirî bên avakirin û gundiyên koçber bikaribin bizîvirin gundên xwe û ji ber zirarên wan dîtî, cirm bê dayîn,*

● **Di nav beşên Kurdistanê de têkiliyên siyasî, aborî, çandî, civakî û sporî azad bin û herwiha bikaribin saziyên hevpar damezrînin,**

● *Beşên Kurdistanê li himberî gef û xetereyên zordariya nîjadperest, di nav xwe de bikaribin bi awayekî fermî pergaleke hevpar a hevbendî û piştgiriyê ava bikin,*

● **Hindekayiyên neteweyî û olî yên Kurdistanê bên qebûlkirin û ji bo bawerî, ziman û çanda xwe piştgiriyê wergirin,**

hingê tenê em dikarin li Tirkiyeyê ji bo Kurdan qala hebûna demokrasiyê bikin. Û divê ji bo van mebestan bi hedarî xebateke hevpar a fermî hebe ku mirov qala pêvajoyeke aştîxwaz û demokratîk bike.

Bêndên li jor rêzkirî ne xewn in, berevajî, li seranserê dinyayê hima hima hemû neteweyan ji zû ve ev maf bi dest xistine. Mafên rêzkirî mafên jidayikbûn û hebûnê ne.

De bidin ber çavên xwe ku em çiqas li paş mane û di rewşeke çiqas şerpeze de ne û dewleta Tirkiyeyê li himberî me û dîrokê çiqas sûcdar û deyndar e.

Lê ka li vê sosretê binêrin ku misqalekê ji van mafan weke qenciyê pêşkeşî me dikin û em reben û xwelîser jî vê yekê weke destkeftî û serfiraziyê dinirxînin. Sosreteke din; em hê jî newêrin mafên xwe yên xwezayî eşkere bînin ziman û bidin pêş.

**Sosreteke din; em hê jî newêrin mafên xwe yên xwezayî eşkere bînin ziman û bidin pêş.**



# Sipas ji bo şoreşa Sûriyê

Helîm Yûsiv

Ne ji şoreşa Sûriyê ba, me yê ji kû derê zanîbûya ku ewqas kes hene dikarin bi navê Xwedê kêrên xwe yên tûj derxînin û mirovin din, mîna xwe, ku hem zarokên hinekan ji wan li benda wan in û hem jî dayikên wan xwarineke germ ji wan re amade kirine û çaverêyî wan in, wisa bi wijdanekî rehet şerjêbikin. Me yê ji kû bizanîbûya ku her malek li Sûriyê dikare bibe armanca bermîlên ku ji firokeyên artêşa ku bi navê parêzvanên welat tê naskirin bêne avêtin, wê endamên laşên zarokan, dayik û bavan, kal û pîran tevlihev bikin û di çend xulekan de deh deh, yan jî sed sed, bêyî ku bigihijin xatir ji hev bixwazin, bibin termên bi xwîn.

Her kesî ji me her tişt dibihîst û di televizyonan de jî didît bê çawa mirov xweziya xwe bi hovîtiya lawirên daristanan tînin, lê kê dizanîbû ku ewqasî kuştinên hovane dikarin li ber deriyê her kesî bin. Me yê ji kû bizanîbûya ku partiyeke kurdî dikare mîna keroşkekê bizê û duwazde partî bi yek derbê re jê bikevin. Ji berîka serokekî heft serok bikevin û heta bi qewadan jî kirasên şoreşgeran li xwe bikin û bi navê şoreşê mohra reş li ser eniya her kesî bixin. Kê bîr dibir ku şoreş jî, mîna heywanan, yên şemûş û har hene ku kesên wêrek tenê dikarin nêzîkî wan bibin. Wisa jî yên nizim û rebenokî hene ku her kes dikare li wan siwar bibe. Mîna şoreşa Sûriyê ku kî ji xwe re li kû heyirî mabû, kî ji xwe re li hestiyekî digere, kî ji xwe re li pêkanîna şerîetê digere, kî ji jina xwe aciz e, kî armanceke wî heye û nikarîbû pêk bîne, ji nişkê ve hemuyan bi hev re derfet di siwarbûna li şoreşa Sûriyê de dîtin.

Wekî din, çawa ku generalek rutbe û nîşanan li leşkerên xwe belav bike, wisa jî qelemhilgir ji meqamekî ketin meqamekî din. Kesên ku di hevokekê de bi kêmanî pênc şaşitiyên rastnivîsînê dikin, bûn nivîskar. Hinek ji nivîskarên ku heta duh ji siya xwe ditirsiyan, bûn lehengên destanên şoreşê. Pirraniya nivîskarên kurd pişta xwe dan zimanê kurdî yê bêkêr, ku kesek wî naxwîne û ji bo karibin cihekî ji xwe re di tirêna şoreşê de bigrin dest bi nivîsandina gotarên siyasî û şoreşgerî bi erebî kirin. Televizyon, rojname, malper, facebook û tiştên wekî wê nema têra wan kirin, dest bi belavkirina vîdyo û wêneyên xwe yên ku agir ji devê wan dibare kirin. Ji nişkê ve bi xwe hisiyan ku sûrî ne û hew.

Ji ber vê, divê mirov sipasiya şoreşa Sûriyê bike. Ma ne ji vê şoreşê ba, me yê ji kû zanîba ku kîna di dilê dostekî din, hevalekî li hember hevalekî din, ewqasî mezin e, bilind e û bêserûber û bêsînor e. Şoreşê tenê dikarîbû derî li ber veke, da ku namûs, şeref û heybeta hevalê xwe binpê bike, reş bike û xwe bi gemarkirina hevalê xwe bişo û wekî piştgirê şoreşan nîşan bide. Kê dizanîbû ku ewqasî kurd li hember hevdu bi nefret in, eger ne ji vê şoreşa pîroz ba. Kê dizanîbû ku xwediyê du gotarên bi erebî dikare bibe rewşenbîrekî kurd ji Rojava. Kê dizanîbû ku her kesê ku alfabêya erebî dizane dikare wekî rewşenbîrekî Kurdê Rojava bê binavkirin. Kê dizanîbû ku kesek ji van dikare tivinga milê xwe, di navbera çend kêlîkan de, ji vî milî bavêje yê din û ramanên xwe li gor germayiya cih biguhere û rewşenbîriyê bike. Kê dizanîbû ku em, yên ku bi dehê salane behsa qedexekirina zimanê xwe dikin, ewqasî evîndarê zimanê erebî bin û ewqasî heyranên nivîsandina bi vî zimanî bin. Bi rastî jî, ne ji şoreşa Sûriyê bûya, kê dizanîbû ku çar milyon rewşenbîr di nav sê milyon Kurdên Rojava de hene. Sipas ji vê şoreşê re ku ewqase derpî ji van kesên derûdora me şemitandin û em hinekî din nêzîkî rastiya me kirin.

**Bi rastî jî, ne ji şoreşa Sûriyê bûya, kê dizanîbû ku çar milyon rewşenbîr di nav sê milyon Kurdên Rojava de hene.**

# Gazprom çalakiyên xwe li Herêma Kurdistanê firehtir dike

**Umer Ehmed**
***Hewlêr***

Di dema kombenda aborî ya navneteweyî de li bajarê Rûsya Sankt Petersburgê, serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ligel serokê civata rêveberiya kompaniya gaz û petrolê ya Gazprom a rûsî Alexei Miller peymanek îmze kir.

Di wê civînê de herdu aliyan hevkarî û hevahengiya zêdetir di navbera Herêma Kurdistan û kompaniya Gazprom de teqez kirin. Herwiha behsa çalakî û pêşketinên kompaniya Gazprom li Herêma Kurdistanê di warê lêgerîn û dîtin û pêşxistina zeviyên petrolê de hat kirin.

Di daxuyaniyeke hevbeş de jî herdu aliyan ragihand ku ew bi niyet in hevkariyên navbera xwe firehtir bikin. Ev di demekê de ye ku hikûmeta Iraqê berê fişar li ser kompaniya navborî kiribû, da ku girêbestên xwe ligel Herêma Kurdistanê rawestîne.

Di sala 2012ê de kompaniya Gazprom Oil, ku liqeke kompaniya Gazprom e, du girêbestên hevbeşkirina berheman (PSA) ji bo pêşxistin û lêgerîna li petrolê li Germiyan û Şakel ligel Herêma Kurdistanê îmze kir.

Niha testên jeolojîk li wan zeviyan birêve diçin. Piştî xelasbûna lêgerîn û testan, tê çaverêkirin ku berhemanîna petrolê li wan herdu zeviyan heta sala 2015ê destpêbike.

Kompaniya Gazprom Oil li Germiyan xwedî pişka ji sedî 40 e, herwiha kompaniya kanadî Western Zagros jî xwedî heman pişkê ye, hikûmeta Herêma Kurdistanê jî xwedî pişka ji sedî 20 e. Li devera Şakel jî kompaniya Gazprom Oil xwedî pişka ji sedî 80ê ye û pişka ji sedî 20 jî ya hikûmeta Herêma Kurdistanê ye. Tê çaverêkirin ku herdu zeviyên navborî xwedî tibaba 3.6 milyar bermîlên petrola yedek bin.

Di destpêka sala 2013ê de kompaniya Gazprom Oil girêbesteke nû ligel hikûmeta Herêma Kurdistanê ji bo lêgerîn û pêşxistina petrolê li devera Helebçeyê jî îmze kir, ku ji sedî 80yê pişkên wê yên wê şirketê ne.




Niha jî lêkolînên zanistî li zeviya Helebçeyê destpêkirine.

Li gor raporeke kovara Forbis, di sala 2013ê de kompaniya Gazprom di warê berhemanîna gaza siruştî de mezintirîn kompanî ye li ser asta cîhanê û herwiha piştî kompaniya petrolê ya Erebistana Siudî, Aramco, duyem kompaniya mezin a cîhanê ye di warê berhemanîna petrolê de.

# Nexweşiyên ku bi rêya sêksê tên guhastin

Gellek cûreyên nexweşiyan bi rêya sêksê tên guhastin. Dibe ku hişê mirov destpêkê biçe ser nexweşiya AIDSê ku bi rêya sêksê tê guhastin lê hinek nexweşiyên din ên metirsîdar jî hene:



### 1-Belalûk:

Belalûk bi sedema vîrûsa papîlomayê (HPV) peyda dibe. Ev vîrûs ne tenê bi rêya seksê, herwiha bi rêya pêvebûna çermê kesekî nexweş bi kesekî din re dibe sedema çêbûna belalûkên li çermê kesê din, yan jî endamên zayînê. Hinek celebên van belalûkan ziyana demdirêj li ser kesê nexweş pêk naynin lê hinek ji wan dibin sedema peydabûna penceşêra kom yan jî penceşêra gewrîka zarokan. Ji bo tedawiya papîlomayê dermanên cûre hene.

**Xurî:**

Kurmokekî biçûk dikeve nav çerm de. Hêkên xwe di bin çerm de datîne û deqên sor li ser çerm peyda dike û dûre jî dibe sedema xurekê. Pêvebûna çermê kesekî saxlem bi kesekî nexweş re dibe sedema guhastina vê nexweşiyê. Herwiha di encama pêwendiya seksê de jî ev yek dikare pêk were.

**Suzenek (Gonorrhea)**

Suzenek bi hêsanî bi rêya sêksê tê guhastin û eger neyê tedawîkirin dikare bibe sedema nezokiyê li cem mêr û jinan. Nîşanên wê jî şewata mîzokê di dema mîzkirinê de û kulbûna endamên zayînê ne. Suzenek piştre dibe sedema deqbûna çerm û carcaran di nav movikan de jî belav dibe.

### 2-Zuhrî (Syphilis):

Birîneke bê azar e û kom yan jî endamên zayînê pê dikevin. Pêvebûna çermê kesekî saxlem bi birîna kesek din re dibe sedema wergirtina mîkroba vê nexweşiyê û piştre pê dikeve. Ku Zuhrî neyê tedawîkirin, korbûn û pûçbûna çerm dikare çêbibe.

**Klamîdya:**

Klamîdya bi awayekî lez bi rêya sêksê tê guhastin û ji bilî endamên zayînê, dibe ku gewrîk û tabût jî pê bikevin. Neçareserkirina wê dibe ku bibe sedema nezokiyê. Nîşanên wê li cem mêran xur û şewat di serê endamê zayendî de, kulbûna mîzokê û mîza bi azar in. Nîşanên wê li cem jinan jî xura endama zayendî, bêhna nexweş ji endama zayendî û di dema mîzkirinê û sêksê de azardîtin.

### 3-Tamêsk:

Bi rêya mijandina lêvan û ya endamên zayînê tê guhastin. Herwiha ji encama têkiliya sêksê jî bi endamên zayînî yê beramber tê guhastin.

### 4-Kulbûna ceger B:

Vîrûsa kulbûna ceger B awayekî metirsîdar e û dibe sedema karbestiya ceger û ketina bi penceşêrê. Ev vîrûs bi rêya şilemeniyên laş tê guhastin. Mînakên sereke ji bo guhestinê têkiliya seksê û bikaranîna derziyên ku berê ji aliyê kesekî nexweş ve hatibin bikaranîn in.

Nîşanên kulbûna ceger B ew e ku kesek çend salan nexweş ketibe lê ti nîşanên nexweşiyê nebin. Dilxelandin, zikêş, zerbûn û hestkirina bi westanê jî hinek ji nîşanên vê nexweşiyê ne.

### 5-AIDS:

Vîrûsa HIV dibe sedema lawazkirina endamên berevaniya laş li dijî mîkrobên cuda. Rêyên guhastinê jî heman rêyên guhastina vîrûsa kulbûna ceger B ne. Dibe ku çend salan hest bi ti nîşanan neyê kirin, lê hestkirina bi şewbê bo çend mehan nîşanên vê vîrûsê ne.

Xweparastin ji van nexweşiyan:

Baştirîn rêya xweparastinê ew e ku pêwendiya seksê ligel kesên cûda sînordar bimîne.

Eger bi çend kesên cuda re seks were kirin jî, pêwist e ev xalên jêrîn berçav werin girtin:

***1 - Bikaranîna prezervatîfê, ango kondoman.***

*2 - Piştrastbûna ji wî/wê kesê/a beramber ku nexweşiyên li jor pê re nebin.*

***3 - Eger nîşanên van nexweşiyan li jor hebin, serdankirina bijîşk.***

*4 - Herdem kontrolên pêwist ên bi rêkûpêk.*

***5 - Jinên ducanî dema hesta van nexweşiyan bikin, pêwist e bi lezgînî serdana bijîşk bikin û demildest werin tedawîkirin. Ku nexweşî neyên tedawîkirin, zaroka di zikê dayika xwe de jî dikare bikeve bin metirsiya wan nexweşiyan.***

## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Herêmek bakurê Kurdistanê – Kar, xebat, emel – Çêtir, paktir, baştir. **2-** Destnîşankirina tiştekî – Bide, bîne, bi min de (berepaş) – Qebûlkirin, pejirandin. **3-** Amadekarî, tedarik, bi rêkûpêkkirin (berepaş) – Orgeneralê behr û deryayê. **4-** Nîşana elementa Manganez – Xwelî û reşiya binê beroşê (berepaş) – Hawar, gazî, feryad – Paq, hêt, navbera kulîmek û ling. **5-** Henek, yarî, tinaz (berepaş) – Yan, yan jî. **6-** Cemidî, qerisî, ne germ – Heywanek avî û hov. **7-** Parçeyê ax û herîyê (berepaş) – Safî, zelal. **8-** Navekî zilaman, ebedî (berepaş) – Rez, bax û bîstanê tirî. **9-** Zimanê Ereban – Tûj, dişewitîne (berepaş). **10-** Xanîyê "ka"yê, xanîyê ku êm û kaya heywanan tê de ye – Heywanek bi strî.

**Serejêr: 1-** Serxweş, kêfxweş, jixweçûyî – Pûşê hûrkirî, êmê heywanan (berepaş). **2-** Aşiqî, dilketin, hezkirin. **3-** Kesê ku gotina xwe venaşêre, rasterast (berepaş). **4-** Demsala piştî buharê – Reş, qemer. **5-** Hesinê tenik (berepaş) – Ta, nex. **6-** Rûnê kuncîyan, kuncîyên perçiqandî. **7-** Tirîyê hişkkirî. **8-** Roja em tê de ne, ne doh – Bergeh, qat, pêlik. **9-** Wek şêran, bi şêr ve girêdayî – 24 seet, ne şev. **10-** Armanc, daxwaza dil – Kesê şingirtî, navekî zilaman. **11-** Ji bo çi, qey, sebeb. **12-** Êş, jan. **13-** Pêk anî, çêkir. **14-** Pareyên ku bi erzanî ji ser pişta xelkê tên qezenckirin (berepaş). **15-** Notayek. **16-** Damar, reh, kok

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | |
| 2 | | | ■ | | | ■ | | | | | | | | | ■ | |
| 3 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | ■ |
| 4 | | | ■ | | | | | ■ | | | | | ■ | | | |
| 5 | | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | |
| 6 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | | |
| 8 | ■ | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 9 | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |

**Bersivên hejmara 204**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | K | E | R | E | N | G | ■ | E | Z | ■ | E | Ş | X | A | N | E |
| 2 | A | S | Ê | K | I | R | I | N | ■ | K | ■ | A | R | V | A | N |
| 3 | W | A | W | Î | K | ■ | N | A | S | N | A | M | E | ■ | Ş | Î |
| 4 | Î | R | E | B | ■ | A | S | B | E | R | Î | ■ | B | R | Î | N |
| 5 | S | E | K | ■ | R | ■ | A | R | D | ■ | | | | | | |
| 6 | A | T | ■ | C | E | H | N | E | M | Î | | | | | | |
| 7 | X | ■ | T | A | X | ■ | Î | ■ | I | R | | | | | | |
| 8 | A | Z | E | ■ | T | E | Y | A | R | E | | | | | | |
| 9 | ■ | O | R | G | ■ | M | E | D | O | M | | | | | | |
| 10 | L | O | K | O | M | A | T | Î | V | ■ | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Hêjar îro şêr e



Navê min Hêjar e, ez di meha Îlonê de dibim 5 salî. Ez û malbata xwe li Almanyayê dijîn. Hûn dizanin çima ez îro şêr im? Li baxçeyê zarokan îro şahiya me hebû, mamosteyên me reng peyda kiribûn û weke ku me dixwest em diresimandin. Hinek bûn kîvroşk, hinek bûn piling, hinek bûn qeşmer. Min jî dixwest bibim şêr û mamosteya min ez kirin şêr.

## ŞÊRÊN AFRÎKAYÊ





Şêrên Afrîkayê ji deştan hez dikin. Şêr bi şev çalak in lê bi roj jî mîna pisîngê tembel xwe di bin siya daran de pal didin û dikevin xewê. Rojê 20 seetan radizên. Şêr bi tenya serê xwe najîn, ew di nav refan de dijîn. Car bi car hejmara endamên wan refan dibe 20 an jî 30. Rêveberiya refêkî gellek caran şêrekî nêr bi tenya serê xwe dike, lê carnan jî çend şêrên nêr bi hevdu re rêveberiya ref dikin.



## Hejmaran bigihîne hevdu û wêne tamam bike!



## Tu pê dizanî ?





Di nav 1 kîlo lîmon de ji yek kîlo tûerdk zêdetir şekir heye.



Tîmsah rengkor e. Ew rengan nabîne.



Tenê zerîleyê (kanarî) nêr dixwîne, ya mê naxwîne.



Mêşa hingiv ji ber ku bikaribe nîv kîlo hingiv çêbike, li ser 2 milyon kulîlkan digere.



Tevnpîrk dikare 2 salan bê xwarin jiyana xwe bidomîne.



Balîna çêlikan tîne û çêlikên xwe bi şîr xwedî dike.